## Li Amedê "Muze ya 5 No'lu"

Girtîgeha "5 No'lu" ya Amedê ku di serdema derbeya leşkeri ya 12 Îlonê de, li wê derê kiryarên dij mirovane li girtiyên siyasî yên kurd hate kirin, bi dehan girtî hatin qetilkirin û seqet man, dibe muzexane. Gelek kesên ku di vê girtîgehê de rastî zilm û zorê hatin û bi salan di wir de mabûn, biryara di derbarê muzeyê de wek destkeftiyekê nirxandin û diyar kirin ku muze vebe, ew jî biçin serdanê. Rûpel 11



## Ramanên Beşikçi bi saya weqfê li cîhanê belav bûn

Weqfa İsmail Beşikçi ku di heftê Rêbendana 2011'an de hatibû avakirin di nava du sal û nîvekê de bi dehan çalakî, proje û sempozyûmên cuda lidarxist. Her roj bi dehan kes ji Kurdistan û ji deverên din tên pirtûkxaneya weqfê û ji meteryalên vir sûdê verdigrin û lêkolînan dikin. Rûpel 13


# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar:15 09-15 Tebax 2014 basnews.com


## Brahîm Şêxo:

Malbata Şêxo bi hev re karê hunerî nakin, lê her yek ji wan di ware muzîkê de dixebitin.

R16



## Kurd alîgirê serxwebûnê nê

Piştî ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî biryara referandûma bo serxwebûnê da, li tevahiya cîhanê ev mijar hat rojeva kurdan. Li Kurdistan û dîasporayê ji bo piştgiriya serxwebûnê gelek kampanya hatin destpêkirin û çavlirê ye ku di pêşerojê de doza serxwebûnê di nava kurdan de berfirehtir bê şirovekirin. Rûpel 8



## Peytexta Ezdatiyê Laliş a nûranî

Paristgeha pîroz, cîhê heca Ezdiyan Laleşa Nûrani ji mêj ve mulkê Ezdiyan e. Şêx Adî yê pîrozê Ezdiyan jî li vî bajarokî veşartiye.

Di qewlekî Ezdiyan de bi vî awayî behsa Laleşê tê kirin:

Badî çil salî bi hijmare
Erdê bi xwe re negirt hişare
Heya Laliş di nav de nehate xware.
Laliş ku dihate
Li erdê şîn dibû nebate... Rûpel 4

### Derdora Şengal û Zûmarê ji DİAŞ'ê tê paqîjkirin

# Pêşmerge li Mûsilê ye

www.arsivakurd.org



Hêzên Pêşmerge ku piştî êrişên DAIŞ'ê ji pozîsyona parastinê derketin û dest bi êrişê kirin. Şervanên kurd berê xwe dan Mûsilê. Hêzên DAIŞ'ê yên li devera Şengal û Zûmarê piştî ku hêza wan bi giştî hatiye şikestin, belav bûn. Tê ragihandin ku armanca Pêşmerge bidestxistina Mûsilê ye û ji niha ve DAIŞ'ê ji çend taxên bajêr derxistine.

Piştî êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Şengalê, gerîllayên HPG'ê jî ji bo parastinê hatin herêmê. Li gelek deveran Pêşmerge, YPG û HPG bihevre şerê DAIŞ'ê dikin. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ji Pêşmergeyan re got, “Emê derbeyên mirinê li dijminê xwe bixin.” Barzanî derbarê Peşmergeyên ku li Şengalê paşve kişiyan jî biryara lêpirsînê da. Rûpel 02-03




## Bi kurdî xwendin kêm e

Tevî hemû derfetên ku ji bo wêşangeriyê derketine holê, rewşa wêşanxeneyên kurdî ji berê jî xirabtir e. Edîtorê Wêşanxaneya J&J Azad Zal diyar kir ku xwen dina bi kurdî pir kêm e. Li gor Zal axaftin jiber e û pirsgirêkên wan pir in. Rûpel 14

## Rejîm tim sey xo yo!

Tayê kurdê ma estê vanê şarî way û bira yê, mîyanê kurdan û tirkan de problem çin o, dewlete teda ro kurdan kena. Rûpel 6

# Pêşmerge berê xwe da Mûsilê

Tê ragihandin ku hêzên Pêşmerge ku piştî êrişa IŞÎDê ya ser Kurdistanê ji halê parastinê ketine halê êrişkirinê, berê xwe dane Mûsilê. Her wiha tê ragihandin hêzên DAIŞ'ê yên li devera Şengal û Zûmarê piştî ku hêza wan bi giştî hatiye şkestin, belav bûne û li deverên dîtir êrişan pêk tînin. Wekî dî tê ragihandin ku armanca hêzên pêşmergeyan bidestxistina Mûsilê ye ku DAIŞ'ê hêzeke mezin lê kom kiriye û ji niha de DAIŞ' IŞÎD ji çend taxên perê bajêr derxistine. Hêzên Kurdan piştî operasyonên hevbeş yên pêşmerge û Yekîtiya Parastina Gel kontrola bajarkên Zûmar û Şengal bi dest xist.

Hate ragihandin ku, şer bêtir li dora Mûsilê dijwar bûye û li gorî dengûbehsên ku ji deverê tên, hêzên pêşmerge û YPG bi karwaneke hevbeş ya serbazî dor li gundê Mehmûdiye yê bi ser Mûsilê ve girtiye ku di destê IŞÎDê de ye. Tê ragihandin tevahiya endamên IŞÎDÊ yên li Mehmûdiye hatin kuştin an jî girtin. Di vê navê de hêzên pêşmergeyan danê sibê, bi çekên giran êrişek bir ser taxa Musîla Kevnare ku nêzîkî Bendava Mûsilê ye. Di vê operasyonê de gelek endamên IŞÎDê hatine kuştin û li gorî karbidestên serbazî gelek alav û amûrên IŞÎDê hatine têkşkandin.

Hêzên Pêşmergeyan ku piştî operasyonê çûne deverê, dest bi ser zerîpoş û Hummer û gelek çekên IŞÎDê girtine. Piştî operasyonê wêneyên çendîn endamên kuştî û zindî yên DAIŞ'ê hatin belavkirin. Hate diyarkirin ku IŞÎDê koz û sengerên xwe yên li Taxa Mûsila Kevnare ku ji 9'ê hezîranê pê ve lê ye, terikandine û vekişiyaye. Her wiha tê ragihandin ku hêzên Pêşmerge ku çarşema borî operasyonek saz kiriye bo ser taxa Arabiye, her pêş ve diçin û hêzên IŞÎDê ji Arabiye derxistine.

Hate diyarkirin ku şerekî dijwar li Arabiye ku çekdarên IŞÎDê bi gelek çekên giran sengerên xwe qewî kirine, rû dide û hêzên Pêşmerge her ber bi armanca xwe ve diçin. Tê ragihandin ku hêzên Pêşmerge û YPG li hindek deveran bi balefirşkên û tenkan operasyonên hevbeş bo ser çekdarên IŞÎDê pêk tînin û fermana vê operasyonê ji aliyê Mesûd Barzanî ve hatiye dayîn.

Tê gotin ku Mensûrê kurê Mesûd Barzanî fermandariya hêzên Pêşmergeyan yên li deverê dike. Hêzên YPG Û Pêşmerge operasyonên hevbeş li dar dixin. Berdevkê YPG Polat Can di vê yekê de got: "DAIŞ', dixwaze bi êrişa ser Zumar û Şengalê, wan ji Zaxoyê raqetîne. Em hatin vir da rê li vê yekê bigrin. Me sînorên nav xwe rakirin. Em bi hêzeke giran derbasî Başûrê Kurdistanê bûn da xwîşk û birayên xwe yên Başûrî ji cerd û çeteyên DAIŞ'ê biparêzin." Di vê navê de êrişên IŞÎDê yên ser Kurdan kir ku hêzên Pêşmerge û YPG bigihên hev û bibin yek.

**Parastin veguhizî êrîşê**

Ji 4 gelawêjê vir ve hêzên Pêşmerge û YPG Zûmarê kontrol dikin. Du nevbera DAIŞ û hêzên kurd de li dora Şengalê şer dewam dike. Li vir çekdarên DAIŞê lig elek cîhan bela bûne. Li gor agahiyên ku nûçegihanê me yê Hêwlêrê ragihandin, di pêvçûnên tûn de DAIŞ paş ve kişiya û gelek wendahî dan. Herwiha hin çekên giran yên wan jî ketin destê Pêşmerge. Ji Berdevkên Wezareta Pêşmerge General Helgurd Hîkmet jî diyar kir ku li dora Şengalê kontrol hatiye bidestxistin û Rabiya jî ji DAIŞ'ê hatiye stendin. Li gor agahiyên Navenda Ragihandina YPG jî 6 çekdarên wan di şer de jiyana xwe ji dest dane. Li gor vê ji Rabîa hetanî gundê Til Marû bi dirêjiya 200 km li ser sînor pêvçûn berdewam in.

Di vê navberê de fermandarên Pêşmergeyan kul i Hêwlêrê li hev civiyan, piştî firmana Barzanî biryara derketina ji pozisyona parastinê girtin û dest bi êrîşan kirin. Piştî vê gelek hêzên Pêşmerge yên li Hewlêr û Duhokê jî berê xwe dan herêma şer. Hêzên Pêşmerge ku li Şêngalê ne jî di pozisyona parastinê derbasî ya êrîşkirinê bûn. Li gor agahiyên ku me li hêrêmê bi destxistin, çekdarên DAIŞ'ê piştî pêvçûnên dijwar paşve kişiyan û kontrola Zûmar û Şengalê ket destê hêzên kurd. Di pêvçûnan de hejmarek zêde ji çekdarên DAIŞê dîl hatin girtin û dîsa birek jî hatin kuştin. General Hîkmet da zanîn ku herêma Şengalê bi piranî ji DAIŞ'ê hatiye paqijkirin û bi dehan çekên giran yên wan jî hatine desteserkirin. Hîkmet ragihand ku operasyon dê tenê li vê heremê nebe û dê Pêşmerge berê xwe bide cihên ku DAIŞ wek navend bi kar tîne. Li gor agahiyên ku Hîkmet dan ji pênşçemiyê vir ve 90 çekdarên DAIŞ'ê hatine kuştin, zêdetirî 100 endamên wan jî birîndar bûne û di nava miriyên wan de 2 serfermandarên wan jî hene ku yek el Libi ye û yê din jî cîgirî wî Abu Nasir Libi ye.

**Xetera li ser Kampa Mexmûrê**

Piştî êrîşên DAIŞ'ê li ser herêma Musilê zêde bûn û xeter li ser Kampa Mexmûrê çêbû zaro û jinên kampê ji wir ber bi Hewlêrê hatin dûr xistin. Kampa Mexmûrê li başûrê Hewlêrê, 80 km li dûrî bajêr e. Piştî ku li herêma Guwerê ya ku 30 km dûrî Mexmûrê ye şerê DAIŞ û Pêşmergeyan dest pê kiribû li Mexmûrê tirs ketibû nava gel. Tê ragihandin ku li ser riya Guwerêi Pêşmerge hêzên parastinê çêkirine û da ku DAIŞ'ê ji wir dûr bixîne dest bi êrîşan kiriye..

Di vê navberê de Kampa Çadirî ya Hazerê ya ku 5000 şiiyê tirkmen lê dima hate valakirin. Hikûmeta Kurdistanê, 5000 hezar penaberên Kampa Çadirî ya Hazerê ya 30 km dûrî Hewlêrê ne û nêzîkî Mexmûrê ne ji wir dûr dixîne. Kampa Hazer û 20 km dûrî Hamdanî'yê ya ku li wê herêmê şer heye ye. Li kampê zêdetir tirkmenên şîî û penaberen ereb dimînin. Hat ragihandin ku ji 16 endamên DAIŞê yê ku li nêzîkî gundê Guwerê roja Sêşemê hatibûn kuştin 4 welatiyên Fransayê 1 jî yê Emerikayê ye.

**Barzanî: Bi derbê mirinê êrîşî DAIŞ'ê bikin**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî emir da fermandarên Pêşmergeyan ku li hember dijminên gelê Kurdistanê şer bikin û got ''Em dê bi derbê mirinê êrîşê dijminê xwe kin'' Barzanî bi bîr xist ku piştî ku Mûsil ketiye destê DAIŞ'ê Herêma Kurdistanê tenê li ser xeta xweparastinê maye û got: ''Lê terorîstan kir ku em şer bikin. Êrîşê Kurdistanê kiri û di van çend rojên vê dawiyê de gelek bûyerên ne xweş qewimîn. Ji ber vê me biryar da ku Pêşmerge terka xweparastinê bide û heta ku can bi wan re hebe şer bike. Em dê tek bihosteke axa Kurdistanê jî nedin dest dijmin. Em dê li xwîşk û birayên xwe yên Êzidî xwedî derkevin û wan mîna çavên serê xwe biparêzin. Ew erka me ye."

**Karayılan: Em Şengalê ji DAIŞ'ê re naterikînin**

Piştî, DAIŞ'ê Şengal dagir kir û êzidiyan berê xwe dan çiya, li gel pêşmergeyan YPG'ê jî bi boneya Şengalê ji çeteyan paqij bikin dest bi operasyonê kir. Piştî van geşedanan, Endamê Konseya Rêveber ya KCK'ê û Berpisyarê HPG'ê Murat Karayilan daxuyand ku dê mudaxale li Şengalê bikin.

Karayilan got, "Li Şengalê ruha kurdperweriyê heye. Em wê derê ji DAIŞ'ê re naterikînin. Bila hemû gelê me bizane, li gor hêza xwe em ê mudaxale bikin û gerîlla dê li wê derê bimîne. Hêzên me heta ku herema Sîncarê û Çiyayaê Sîncarê ji çeteyan paqiji bike dê li heremê bimîne, ger pêwîste dê li wê derê bimîne."

Piştî vê daxuyaniyê, hate ragihandin ku hezar û 600 gerîllayên HPG û YJA Starê, gihiştine Şengalê.

**Sîvîlan xwe spart çiyayê Şengalê**

Hate daxuyandin ku bi hezaran kesên Piştî êrîşa DAIŞ'ê berê xwe dabûn çiyayê Şengalê di rewşek xerab de ne. Hate diyarkirin ku heta niha ji ber tî bûn û birçîbûnê 6 zarokan jiyana xwe ji dest dane. Berdevkê Yekîneyên Berxwedana Şengalê Dilşêr Şengal, diyar kir heta niha ewlehiya bi hezaran kesî girtine û da zanîn ku pirsgirêkên gelek cidî yên av, derman û xwarinê heye. Şengal, got ku hêj bi hezaran kes li çiyayê Şengalê ne û li benda rizgarkirinê ne. Şengal, herî dawî ji bo sivîlan ji saziyên alîkariyê yên netewî û navnetewî re banga alîkariyê kir.

**Lêpirsîn di derbarê pêşmergeyên ji Zûmarê vekişiyane de tê vekirin**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Berzanî got ku, di derbarê kesên ji Şengal û derdora wê rêreviyane û bûne sedem ku ew der bikeve destê DAİŞ'ê de lêpirsîn dê despê bike. Barzanî ku bi serokê olî yê êzdiyan Baba Şêx re hevdîtin pêk anî; di derbarê qewimîneên Şengal û Zûmarê de ji Baba Şêx agahî stend. Baba Şêx bo çareseriya pirsgirêkên êzidiyan xwest ku her tişt bê kirin û rêya bi DAİŞ'ê re şer bikin jî destûr bê dayîn. Barzanî jî xemgîniya xwe bo êzidiya diyar kir û wiha got: "Bo ku em gelê xwe yê êzidî ji destê terorîstan xilas bikin û alîkariya koçbera bikin emê hemû derfetan bikarbînin. Emê her bihosta axa Şengalê biparêzin." Barzanî got ku dê di derheqê kêmasiya ewlekariyê de lêkolîn bê kirin kesên ku bûne sedema vê dê cezayê ku heq kirine bigirin.

**Ji Barzanî bangawaziya aramiyê**

Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî daxwiyaniyek jî di derheqê mijarê de ragihand û xwest ku gel aram bibe. Di daxuyaniyê de hat gotin ku pêşmerge li Sîncar, Celevle û Guvarê DAİŞ têk biriye û ji gel xwest ku netirsin, jiyana xwe ya rojane di nav aramiyê de berdewam bikin. Daxuyaniya nivîskî ku ji Wezareta Karên Hûndir de hat belavkirin de jî hat gotin ku; herêmê kurdan bi tevahî di destê pêşmergeyan de ye. Hat xwestin ku gel bi propagandayê neyar nexape.



## Êrîşên DAİŞ'ê pêşmerge û YPG'ê nêzî hev kir

Şervanê YPG'ê Mahsûm Mahmoud ku li eniya şer e, diyakir ku cîhê ku niha DAİŞ li ser deshilat e berê di destê Malîkî de bû ye û piştî Malîkî ji wir wekişiyaye DAİŞ ketiye wan deran. Ku Malîkî kişiya herêmê kurdan jî ketine destê Pêşmerge lê ji ber ku Pêşmerge li vir nû bi cîh bibûn hakimiyetek baş bi dest nexistibûn. Mahmoud diyarkir ku, ji ber hêzên Herêma Kurdistanê li Şengalê bi tevahî cîh nebibûn ji ber wê neçar mane paş de vekişin. Mahmoud ew agahî dan me: "Piraniya wan ji ser Tîl-Koçer vekişiyan û ji wir jî derbasî Duhokê bûn. YPG li vir alîkariya wan kir. DAİŞ piraniya cîha girt destê xwe. YPG bo rewşê binirxînin bi Pêşmerge re hevdîtin çêkir. Li gelek cîhan Pêşmerge û YPG bi hev re tevgeriyan. DAİŞ li cîhên ku xist destê xwe komkujî pêk anî. Divê gelê kurd li êzdiyan xwedî derkeve û ewê derkevin jî. Ev deynê stûyê kurda ne. Êrîşên DAİŞ'ê yên li ser Kurdistanê bû sedem ku pêşmerge û YPG bi hev re tevbigerin. Hemû hêlên kurdan jî yekîtiyê dixwazin û belkî ev bibe sedem. Hetanî niha li hêla Rabîa, gundê Mahmût, Welo, Wewelîd, Zêmar ji hêla YPG'ê ve hat girtin.

## Pêşmerge û YPG li sînor bihevre ne

Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge Cabber Yawer da zanîn ku Pêşmerge û YPG li ser sînorên Sûriye bi hevkarî tev digerin û navenda Şengalê niha di destê DAIŞ'ê de ye. Yawer wiha axivî, "Li nava Şengalê komên DAIŞ'ê hakîm in. Li wir hêzên kurd nîn in. Li derdora Şengalê rast e hêzên kurdan kontrol pêk anîne lê li navçeyê tenê Hêzên Parastina Şengalê bi DAIŞ'ê re şer dikin. YPG jî nehatiye û peşmerge jî hîn nikarîne ku xwe bigihînin wir. Pir gundên derdorê niha di destê Pêşmerge de ne. Hêza YPG sînorê aliyê Rojava diparêze. Kesî hîn nikariye ku bigihîjîn Şengalê. Di derbarê wendahiyên Pêşmerge de zalaliyek nîn e. Em hîn negihîştinê ku ka çend Pêşmerge jiyana xwe ji dest dane. Mixabin Şengal bi temamî di destê DAIŞ'ê de ye. Pêşmerge û YPG bi hev re li aliyê sînorê Sûriye bi hev re ne. DAIŞ hatibû wir û YPG li wir pêşî li wan girt. Peşmerge rast e neçar mabû ku paş ve vegere. Hêza DAIŞ gelek zor bû. Bi hêzek mezin hatibûn. Şengal jî pir dûrî Duhokê ye. Ew der bêhtir jî gundên ereban in. Wan jî piştgiriya DAIŞ'ê dikirin. Peşmerge neçar ma ku paş ve were. Aliyê Zûmarê jî wisa ye. Li wir jî ereb hene û piştgiriya wan dikirin. Li Şengalê rewş niha ne baş e. Bi hezaran kes, jin, zarok û pîr li çiya ne. Hukumeta Heremê bi hêzên esmanî alîkariya wan dike lê rewş xeter e. Peşmerge tê negihîşt ku beriya ku DAIŞ bê li wê heremê amadekariyên xwe bike. Ji nişke ve rewş hat vê merhaleye. Hukumeta Iraqê jî bi vî rengî xwarin û avê bo wan dişîne. Di derbarê kuştinên DAIŞ'ê de jî tu agahiyên zelal nîn in. Em nizanin ku çend welatî hatine kuştun. Li nêzikî Hewlêrê jî şer heye. 60 kilometre dûr î Hewlêr li nêzikî Maxmûr şer qewimiye niha. Li hember vê rewşê amadekariyên hukumetê bi her avayî didomin. Ji bo kul i Kurdistanê DAIŞ bi temamî bê paqişkirin her rê û rêbaz têne ceribandin. Bi hikumetên dewletên hermê re, bi Ewropa re têkilî hatine danîn. Bo vê daxwaz hatine kirin bo piştgirî û çekan."





www.arsivakurd.org

## Peytexta Ezdatiyê

# Şêxan û Laleşa Nûranî

**Welat Baz**

Warê şêxan, peytexta Ezdiyan, pîrozgeha Dasinyan bajarê Şêxan e yek ji qezayên Dihokê ye.

Şêxan di nav paralelên 36 û 38'ên Bakûr û merîdyenê 45 û 23'ê Rojhilat de cîh digre. Bajêr ji bakûr ve cîranê Dihokê û ji başûr ve jî cîranê Mûsilê ye. Şêniya niştecîyên Bajarê Şêxan ji 50 hezarî zêdetir e.

Bêtirên niştecihan bajêr bawermendên Ola Êzdatîyê ne. Herêma Şêxan cî û bingeha peydabûna Ezîdiya ye û di dîroka bawermendên vê olê de rolekî xuyayî û bilind lîstiye.

Beşek ji niştecihên bajêr jî Kurdên Muslumanin.

Şêxanî bi zarava Kurmancî bi devoka Bahdînî diaxifin.

Şêxan ku her nawenda mîrgeha Ezdiyan bûye, dîroka wê heta sala 1236an dirêj dibe. Heta sedsala 12'an navê mîrnîşîna Ezdîyan, Mîrgeha Dasinyan bûye.

Paytexta vê mîrnîşiniyê di demên pêşîn de Dihok bûye ku hingê wek 'Dihoka Dasinya' hatiye binavkirin. Piştî hilweşîn û kavlîbûna Mîrnîşina Dasiniyan, Mîrgeha Şêxan peyda bûye. Paytexta wê gundê li Baadrê bûye.

Sînorên Mîrgeha Şêxan, ji çemê Zêya Mezin û heta Çemê Xabûr û devera Surçiya û ji wir jî dihîşt heta Herîr û Welatê Şêxan ya niha û çiyayê Meqlûb û devera Silêvaniyê û heta Çemê Diclê yanî Ava Mezin û bajarê Dihokê.

Mîrgeha Şêxanê rolekî berbiçav û karîger di serpêhatî û jiyana siyasî û dînî ya devera dorûber de leyistiye.

İro li Şêxanê civaka Ezdî jiyaneke otonom dijî. Di karên olî û îdarî de Şêxan ji alî Ezdiyan ve tê birevebirin. Ji bo pêşxistina çand û olê gelek sazî hatine damezrandin. Yek ji van saziyan Bingeha Laleşê ye. Cîgirê Serokê Koma Rewşînbîrî Qadir Selîm Şemo di derbarê damezrandina vê saziyê de van agahiyan dide.







Bingeha Laleş li ser xaka Ezdîxanê de gelek şaxan jî vekiriye û çendîn rojname û gowar, kûrsên fêrbûna ziman û xwendin û nivîsandinê jî têde gelek çalakiyan dike.

### Şêx Adî û Êzdatî

Şêx Adî û birazyê wî Şêx Hesen ku ji rêvebirên mîrnîşîna Şêxanê bûne, nav û dengekî mezin li Kurdistanê dane. Şêx Adî di navbera salên 1073an û 1078an li Lubnanê hatiye dinê. Bapîrên wî ji Kurdên Hekkarê ne. Ew di sala 1111an de li Laleşê bi cîh bûye. Di demên pêşîn de wek mutewasifekî Musluman e. Şêx Adî wek Şêxulam, yanê 'şêxê hemû milletan' dihat qebulkirin. Biraziyê wî, Şêx Hesen wek zana û fîlozofekî bijarte dihat nasîn ku xwediyê Kitêba Cîlwe û çendîn kitêb û nivîsarên din e. Şêx Hesen nav û dengekî mezin peyda kiribû û xelkekî zor lê derdora xwe kom kiribû. Mîrgeha wî esasê dewletekî bû. Li gor hin nivîsarên; 'Ger doza Şêx Hesen serketiba, wê nexşeya İslamê jî gûharîba.'

Ji ber wê tirsê Waliyê Mûsilê Bedredîn Lûlû ji tirsa vê yekê êriş kir ser Mîrgeha Şêxan; Di sala 1246an de, di encama şerên xwînî de Şêx Hesen tê girtin û li zindana Musilê tê xeniqandin. Di êrişa duyêm de, Bedredîn Lûlû di sala 1254an de digîje Laleşê û gora Şêx Adî disotînê. Herwiha Mîrnîşînên Kurdên Musluman û İmparatorên Osmanî jî gelek car êrişê ser Mîrgeha Şêxan kirine.

### Rabirdûya xwînî ya Ezdiyan

Di çerxa şanzdehan de Mîrgeha Şêxan dikeve bin destê Mîr Hesen. Mîr Hesen ku di sala 1520an de nêzî Osmaniyan dibe, wek waliyê bajêrê Musilê tê tayînkirin û kûrê wî Hisên Begê dibe hakimê bajêr. Mîr Hesen Beg di sala 1534an de diçe ser dilovaniya xwe. Piştî serdemê Şêx Hesen kûrê Şêx Adî yê dûyêm û Mîr Şêx Şerefdîn tê. Mîrê herî bi navûdeng ku navê wî di çawkaniyên dîrokî de hatîye ziman, Hisên Beg







# Cejnên Ezdiyan



Di dema Cejna Ezî de yek ji îbadeta bawermendan tewafkirina mekan û pîrozgehên olî ye. Ji ber vê yekê heca Laleşê yek ji ferzên bawermendên Ezdî ye. Sofiyê dergevanê Laleşê behsa girîngiya tewafa paristgehên pîroz dike.

Dema derbasbûna nav Laleşê kevirê ber derî ji bo rêzgirtinê tê maç kirin. Herwiha nobedarê ber deriyê vê mekana pîroz jî yek ji sofiyên Lalêşê ye û destên wî jî tê maç kirin.

Yek ji adetên Ezdiyan, ku derbasî hindirê paristgehê dibin, jin ji bo xatirên cejnê dilîlînin.

Li gelîyê Laleşê li nêzî paristgehê dû avên zelal ku bi navên Kaniya Spî û Ava Zemzem tên naskirin diherikin. Heciyên ku tên Laleşê ji vê avê veduxun û bixwe re dibin.

Dema cejnê de ji gelek deverên cîhanê Ezdî tên serdana meqanên pîroz yên Laleşê.

Li gor baweriyan divê kesî derbasî nav Laleşê bibe pêlavên xwe derxe. Ji ber vê yekê Ezdiyên cejndar hemû li kolanan pêxwas digerin.

Pîrozbahiyên cejnê hefteyekî dajo. Di vê pêvajoyê de bi şevê jî komên bawermend digîjin hevûdû û şevên tarî bi qendîl û mûmikan ronî dikin.

Di dema pîrozbahiyan de gelek îbadetên olî tên kirin. Ji ber ku Laleş hemû bi mekan û ziyaretên pîroz hatiye honandin, bawermendên ku serdana vê derê dikin, hemû deverên pîiroz tewaf dikin. Dergevanê Laleşê behsa cîhên tewafê dike.

Hin malbat zarokên xwe bi ava zemzemê pîroz dikin.Hin kes bi vexwarina ava Kaniya Spî, beden û giyana xwe xurt dikin.

Kesên derbasî eywana Mekana Şêx Adî dibin, nîşane û qubên derdorê maç dikin û li dora wan digerin.

Di hindirê Laleşê de jî bi taybetî keç û xortên ku duxwazin bigîjin miradê xwe, hin ritûelên pîroz bicîh tînin. Li gor yek ji van ritûelan dibê çarikeke ji mekanê pîroz 3 caran davêjin ser stûnekî. Dîsa stûnekî hindirê avahiyê ji alî xortan ve tên hemêzkirin. Ev yek jî sê caran tê dûbare kirin.

Di nav Laleşê de çend darên miraza jî hene. Kesên ku benikên ser vê darê vekin û careke din girêk bidin, dûa û senayana dikin, da ku bigîjîn mirazên xwe.

Heta rûxîna rejima Baas, Ezdiyên dervayê herema Laleşê nikaribûn heca xwe bikrana û bihatana serdana Laleşê. Di salên dawîn de ku gelek Ezdî êdî bo hec û serdanê tên vê mekana pîroz, pêwîstî bi saziyên tûrîstîk û civakî peyda bûye. Dergevanê Laleşê di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Li aliyê din di nav mêvanên Laleşê de ne tenê Ezdî ji gelek deverên cîhanê Kurd û biyanî jî hene. Bi taybetî hersal gelek rojnamevan, lêkolîner, baldar û oldar wek tûrîst tên serdana Laleşê.

e. Dema Siltan Silêmanê Qanûnî ji Tebrîzê vedigere û Ezdîn Şêrê Mîrê Mîrgeha Hewlêrê dixeniqîne, ji dêlve wî ve Mîr Hisên Beg wek Mîrê Hewlêr, Soran, Musil û hemû Bahdinanê tayîn dike. Di vê serdemî de nav û dengê Êzidiyan û dewra wan li Şêxan, Mûsil, Hewlêr, Soran û hemû Behdînan bilind dibe.

Ji sala 1520an heta 1566an Mîrgeha Heleb û Şingalê jî di bin destê Mîr Ezdîn kûrê Yusif Kurdî de bu. Ev Mîr, ji binemala Mîr Şerfedîn ji mala Şêx Hesenê Adanî bu.

Bi xurtbûna Mîrnîşina Ezdiyan, Dewleta Osmanî ket gumanan û mîrên Musluman li dijî wan xist tevgerê. Piştî vê yekê mîr û serekeşîrên heremê yên Musluman li dijî Mîrê Ezdî bûn yek û êrişê ser Hewlerê kirin. Di encama şer de Mîr Hisên ji neçarî ji heremê reviya. Siltan Silêmanê Osmanî, Hisên Beg bir İstenbolê û li wî li wê derê li sêdarê da.

**Bi vî awayî rêçên bawermendên van şaristaniyan li Laleşê hatine kolan. Piştî hatina Şêx Adî ya heremê jî bajêr û dever bûye nawenda ola Ezdiyan.**

Piştî kuştina Mîr Hisên Beg, Êzdiyan beranberî Dewleta Osmanî şer kirin. Li ser vê yekê Osmaniyan bi devê Miftiyê Dewletê Abu al-Siud Emadî fermana qirkirina Êzidiya derxistin. Piştî vê fermanê rojên zêrîn yên Ezdiyan reş bûn. Piştî kuştina Hisên Beg, Dewleta Osmanî Wîlayetên Mûsil û Hewlêrê di sala dan destê Mîrê Botan Elî Sîdîq Beg kû ew jî bi esil Êzidî bû. Di sala 1534an de Mîr Hesenê kûrê Mîr Sêvdînê, Mîrê Amêdiyê, ku di bin sîwana Dewleta Sefewî de bû bi alîkariya wan êrişê Dihoka Dasiniya kir û Mîrgeha Şêxan û derdorê xist bin destên xwe.

### 72 Ferman

Di encama van zilm û zoran de di lîteratora Ezdiyan de mesela '72 ferman' derketiye holê ku ew dîroka xwe wek rêzefermanan dinirxînin. Babaşêxê Ezdiyan di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Di çerxa 17'an de, Mîrê Êzidî Mîrzayê kûrê Mîr Hesen li dijî Sefewiyan bi Osmaniyan re hevkarî kir. Mîrza bi Mirad Xanê Osmanî re dostanî danîbû. Wî Gundê Başîkê kiribû melbenda Mîrgeha xwe. Dewleta Osmanî Mîrza wek Serlêşkerê Behdînanê tayîn kiribûn. Mirad Xan lêşkerekî mezin bo wilayeta Kurdistanê amade kir ku, pirraniya wan Êzidî bûn.

Begên Kurd yên demê yên wek Xan Ahmedê Mîrê Şarezûr û Erdelanê tarefdarê Dewleta Sefewî bû. Ahmed Xan di sala 1623'an de beşek mezin ji Kurdistanê xistibû bin destê xwe û êrişê devera Êzidiyan dikir. Di şerê sala 1639'an Mîrza tevî Artêşa Osmanî ajot ser Bexdayê û di şer de serlêşkerê Sefewiyan kûşt.

Siltan Mirad di sala 1650'an de ew kir paşayê Wilayeta Mûsilê. Mîrze salekî paşatiya Mûsilê kir. Di dema wî de li heremê avedanî, çandinî û hêminî pêşket. Kelayekî li ser rûbarê Dijle ava kir kû heta niha şûnewarên wê bi navê Baştabiya mane.

Têkiliyên Mîrze li gel Mîrên Kurd, bi taybet Mîrê Amêdiyê baş bûn. Nav û dengê wî belav bû. Ji ber wê yekê Osmanî jê tirsiyan û jê daxwaz kirin ew here İstenbolê. Mîrza Beg li İstenbolê debar nekir. Bi dizî, berê xwe da Êzîdxanê. Lê di rê de ji alî Tirkan ve hat kuştin.

Piştî vê serpêhatiyê dîsa di navbera Êzidiyan û Dewleta Osmanî de şer çêbûn. Mîrê Êzidiya yê nû, Emadedîn Hekkarî tevî 6 hezar şerwan êriş bir ser Wezîr Melîk Paşa û devera Berwarî Bala û Kela Dûrî jê stend. Dewleta Osmanî bi lêşkerekî mezin û bi alîkariya mîrên heremê, êrişa Êzidiyan şikandin.

**Laliş gotineke kurdî ye û ji dû pêyvan pêk tê: 'La' tê wate ya 'cî' an jî 'li cem.' Peyva din 'laş" e. Herdû peyv bihevre tên wate ya "cîhê laş". Yanê cîhê ku laşê Şêx Adî lê ye.**

Di dema Elî Begê kûrê Hesen Begê de di sala 1831'an de fermana herî mezin bi destê Mîr Mehemedê Rewandûzê tê ser Êzidiyan. Ji bilî kuştina çend hezar kesan, 100 hezar kes jî, tên dîl girtin. Hisên Beg kûrê Elî Beg bi zîrekî xwe gihandibû Siltan Ebdilhemîdê Osmanî. Wê demê li heremê li dijî Osmaniyan hin serhildanên Kurdan peyda bûbûn. Osmaniyan hizir dikir ku destê Hisên Begê di van bûyeran de heye û ew ji holê rakirin.

Di sala 1892'an de di dema Mirza Beg de, Ferîk Wehbî Paşa yê Osmanî êrişê Şingalê kir. Mîrze beg ji tirsa bû Musluman. Herçend poşman bû jî, ji çavê Êzidiyan ket û birayê wî Elî Beg hat ser hukum. Mîrza Beg li gel jina xwe Meyan Xatun bo 3 salan çûbû sirgûnê. Piştî ku vegeriya herçend mîriyatiya domand jî di vê pêvajoyê de rêvebirî di destê Meyan Xatunê de bû. Ew ji sala 1913'an heta 1957'an wek jineke navdar, ket nav dîroka jinên hûkûdarên Kurd.

Mîrza Beg di sala 1913'an de hat kûştin. Paşe Seîd Begê kûrê Elî Beg hat ser textê Ezdiyan. Niha jî kurê Seîd Beg Tehsîn Beg Mîrê Ezdiyên Kurdistanê ye.

### Laleş a Nûranî

Paristgeha pîroz, cîhê heca Ezdiyan Laleşa Nûrani ji mêj ve mulkê Ezdiyan e. Şêx Adî yê pîrozê Ezdiyan jî li vî bajarokî veşartiye.

Di qewlekî Ezdiyan de bi vî awayî behsa Laleşê tê kirin.

''Erd mabû bihîtî
Hidûdekî xweditî,
Got: "Ezîzê min, erd bê wê surê natebitî."
Badî çil salî bi hijmare
Erdê bi xwe re negirt hişare
Heya Laliş di nav de nehate xware.
Laliş ku dihate
Li erdê şîn dibû nebate
Pê dizanin çiqas kinyate"

Laleş yek ji deverên kevnare yê Kurdistanê ye ku bûye peytexteke olî û siyasî.

www.arsivakurd.org

# Rejîm tim sey xo yo!

**Roşan Lezgîn**

Herçiqas Tirkiya de nê serranê peyênan de tayê çî vurîyayî, tayê qedexeyê huşkî sist bîyî la esasê xo de rejîmê tirkan; fikr û nîyetê tirkan eynî yo.
Yanî derheqê kurdan de nîyet û polîtîkaya tirkan nêvurîyaya û mumkin nîyo bivurîyo zî.

Tayê kurdê ma estê vanê şarî way û bira yê, mîyanê kurdan û tirkan de problem çin o, dewlete teda ro kurdan kena. Ez qet wina nêfikirîyena. Mi gore tedaya ke Tirkîya de ro kurdan bena, esas hetê miletê tirkî ra bena. Çunke dewlete xora temamen dewleta miletê tirkî ya, polîtîkaya dewlete goreyê hewceyî û berjewendîyê miletê tirkî yena pêardiş. Mesela, gama ke dewleta Tirkîya yew kurdî tepîşena, mehkeme kena û ceza dana ci, vana “Nameyê miletê tirkî yê necîbî ser o...” û qerar gêno. Heto bîn ra, eke ma sey îstîsnayêkê nadîdeyî Îsmaîl Beşîkçî nêhesibnin, tirkê ke polîtîka û kerdenê dewleta xo rê îtîraz bikerê çin ê. Tam eksê naye, yew çîyo tewr qijek de bîle tirkî alaya xo gênê û vejîyenê kuçe vanê “Wa dewleta ma sax bo...” Coka herinda ke ma vajin “tedaya dewlete” de ma vajin “tedaya neteweya serdeste” yan zî rasterast ma vajin “tedaya tirkan” hîna rast o.

Tedaya ke ziwan, nasname, kultur, huner û edebîyatê kurdan ser o estbî, tim faydeyê ziwan, nasname, kultur, huner û edebîyatê tirkan de bî. Mesela, tirkan muzîkê ma qedexe kerdbi, coka kurdê ke vengê înan weş bi, waştêne xo hunerê muzîkî de îfade bikerê, mecbur mendêne ke bi tirkî hunerê xo îcra bikerê. Bi no qayde belkî bi seyan hunermendanê kurdan xizmetê muzîkê tirkî kerd. Muzîkê kurdî, meqam û melodîyê muzîkê kurdan tercumeyê tirkî kerd, muzîkê ma kerd malê muzîkê tirkan. Edebîyat de zî rewşe wina bî. Eke ziwanê kurdan qedexe nêbîyêne, mumkin bi ke Yaşar Kemalî romanê xo herinda tirkî de bi kurdkî binuştêne. Hende romanê ey herinda ke wina bîyî malê edebîyatê tirkî de do bibîyne malê edebîyatê kurdkî.

Îdareyê tirkan gama ke bineyke demokratîze beno, ver bi nermbîyayîşî tayê gaman erzeno zî ancî nîyetê xo yê eslî ra, polîtîkaya xo ya bingeyêne ra fek veranêdano. Mesela, dewlete kanalê televîzyonî TRT6 akerdo ke bi kurdkî weşane bikero. Labelê musade nêkena ke nameyê dewan, qezayan û bajaranê kurdan bi kurdkî binusîyo. Herinda “Wan”î de “Van”, herinda “Şirnex”î de “Şırnak”, herinda “Ruha” de “Şanlı Urfa” dana nuştiş. Bi no qayde mudaxeleyê ziwanê kurdan kena, ziwanê ma xeripnena, herimnena, tehqîr kena.




**Tedaya ke dewleta tirkan kena, eslê xo de tedaya miletê tirkî bi xo ya. Heta ke kurdî nêbê wayîrê dewleta xo, îdareyê xo tirkan ra cîya nêkerê, rewşa kurdan nêvurîyena, kurdî nêbenê kurd.**



Seba ke dewleta tirkan nêwazena kurdî bi alfabeya xo binusê, nameyanê kurdkî de herfanê sey Q W X Î Û qebul nêkena. Coka nameyê tutanê kurdan ke nê herfî tede estê qebul nufus de qeyd nêbenê.

Serra 2010î de Dîcle Anter û cinîya ey Hêlîne ke Batman de ciwîyenê rê yew keyna bena. Nameyê aye “Asiwa” pananê. La dayreyê nufusî yê tirkan seba ke name de herfa “w” esta qeyd nêkeno. Mudirê dayreyê nufusî vano nameyê tute bibedilnîn, bikîn “Asive” ma qeyd bikin. Yanî wazenê eslê nameyî bixeripnê, orîjînê eyê kurdkî biherimnê, bêmana bikerê. Labelê Dîcle û cinîya xo Hêlîne qebul nêkenê. Seba ke Dîcle zulmê dewleta tirkan ver Swêd de mendo coka hem hemwelatîyê Swêdî yo hem zî yê Tirkîya yo. Wirzeno şino konsolosxaneyê Sêwdî yê Tirkîya de keynaya xo nufusê dewleta Sêwdî de bi nameyê aye yo raşt qeyd keno. Dima di rey muracatê dayreyê nufusê tirkan keno ke seba tuta xo bi eynî nameyî hemwelatîbîyena Tirkîya bigîro la ancî seba ke nameyê aye de herfa “w” esta, muracatê ey red kenê.

Çendeyêk verê cû Dîcle, cinîya xo Hêlîne û keynaya xo Asiwaya çarserrîye gêno seba zîyaretêk şino Gurcistan. Gama ke roja 12 temmuze 2014 de wet ra ageyrenê berê sînorî yê Sarpî de bi sedemê ke “Tirkîya de heqê roniştişê aye çin o” Asiwa nêgênê zere. Û 677,50 TL ceza înan rê birnenê ke înan “zemanê xo de muracatê şubeyê xerîban nêkerdo û mudetê mendişê Tirkîya îhlal kerdo.” Bi birnayîşê ceza zî nêmanenê, bi înan yew teahutname danê îmzakerdiş ke ganî mîyanê des rojan de şirê muracat bikerê û Asiwaya ke welatê xo de, Batman de ameya dinya, welatê xo de ciwîyena rê desturê roniştişî bigîrê. Tam îşkence, îşkenceyê tirkan...

Dîcle û cinîya xo Hêlîne naye ser o yew pankarte virazenê û ser o “Ma welatê xo de, keyeyê xo de yê. Ma xerîb nîyê!” nusenê Batman de balkona keyeyê xo ra aliqnenê. Se bikê? Yan gereka welatê xo ra bar bikerê şirê Swêd yan zî gereka nameyê kurdîtî xo ser ra wedarê, nameyê tirkan xo wa nê.

Dewleta tirkan seba ke têkilîyanê xo yê teberî de muxatabê persanê sey çira heqê kurdan înkar beno nêbo, mekteban de, o zî sinifa pancine ra, sey dersa weçînita îmkanê musayîşê kurdkî da. Yanî tutê kurdan ke metkebê verênî de wanenê eşkenê sey dersa weçînita tercîh bikerê ke hewte de saetêk kurdkî bimusê. Na rey malimê ke derse bidê çin bî. Naye ser o tayê unîversîteyan de bi zor û bela desturê programê perwerdekerdişê malimanê kurdkî da. Bîy hîrê serrî ke nê programî ra bi hezaran malimî mezun benê la hema tu kes nînan ra tayîn nêbîyo. Dewlete kadro nêdana malimanê kurdkî. Hetêk ra vana malimî çin ê, coka ma dersa weçînita ya kurdkî qebul nêkenê hetêk ra zî maliman tayîn nêkena. A karê tirkan wina yo, demokrasîyê înan no yo! Tam qeşmerîya xo bi ma kurdan kenê. Xo rê bi ma kay kenê.

Hetanî nika her çîyê aîdê kurdan qedexe kerdêne û waştêne bi no qayde kurdîtîye çinê bikerê. Na rey zî wazenê qaşo serbest bikerê û bi nîşandayîş bêqîymet bikerê, mîyan ra wedarê û puç bikerê, bipuynê.

Vera nê çîyan de, vera na polîtîka de çapemenîya tirkan, roşinvîrê tirkan bêveng ê. Yanî paştgîrê polîtîkaya dewleta xo yê. Mesela, eke Kurdistanê Başûrî de îdareyê kurdan nameyê yew tuta tirkmane nufus de qeyd nêkerdêne, nika Tirkîya de qîyamet wiriştbi. Coka ez vana, tedaya ke dewleta tirkan kena, eslê xo de tedaya miletê tirkî bi xo ya. Heta ke kurdî nêbê wayîrê dewleta xo, îdareyê xo tirkan ra cîya nêkerê, rewşa kurdan nêvurîyena, kurdî nêbenê kurd.



# Hawtemal



**Çeko Kocadağ**

Kirmancanê Qizilbaş -Alewîyan mîyan de, goreyê serenameyê Rûmî edi aşma Adare de Qereçarşemeyî ra tepîya, Hawtemalî ênê fîrazkerdene. Hawtemal, tedeyîyê xo ra xelekêde Qereçarşemeyî aseno. Çekûya Hawtemalî “hawt” û “mal” ra virazîya. Kirmanckî (zazakî) de herfa “e”ye di çekûyan bestnena jubînî ra. Mal maneya (vate) milkî û pesan, kurmanckî (kirdaskî) de kî vateya kêyî dano bi mordemî.

Afganijî (her henî Îranîjî) Newroze de hewt çêşîd meyweyan ra yew werd virazenê. Nameyê eyî Haft Mewayî (Hawt Meyweyî) yo. Ma xo ra zerfetîya Hawtemalê Kirmancanê Qizilbaşan û Kuloça Serê Salê ya Kirmancanê Êzdîyan hewt taman ra (ardî, sole, ron, sîr, şekir, hingemîn û şit...) nêvirazîna. Beno ke çekûya Hawtemalî, deformebîyena çekûya Haft Mewayi bo. Her di termî jubînî ra durî nêasenê. Hawtemal de ganî hewt kêyan de zerfetî biwerîyê. Beno ke Hawtemal nameyê xo Hewt Kêyan ra kî bigêro.

Seba ke aşma Adare de di Hawtemalî tê dime fîraz kerînê, ê verênî ra Hawtemalo Qic, ê diyîne ra kî Hawtemalo Pîl Hawtemalo Qic, seba ke hewtê aşma Adare de (goreyê serenameyê Rûmî, ke teqabilê 20.Adare ya serenameyê Mîladî yo) kerîno, cira Hawtê Martî kî vajîno. Henî bawerîno ke sacîya germine a verêne na roje kuwna bi herd. Na roje kesêde nuxrîyî bi çarpa kenê aspar û bi helbikan awe verdanê re ser, ke wa şîlîye bivaro. Na yewe Hawtemalo Pîl de kî kenê. Şar, êndî vare ra bîyo bêzar û "Şilî şilî nan û do, varê varê cî de to" vano. Zerfetîyan pojenê û jubînî silaynenê. Her kes ganî hewt kêyan de zerfetî biwero.

Hawtemalo Pîl, 17.Adare de (teqabilê 30.Adare ya serenameyê Mîladî) êno fîrazkerdene. Na roje kî fênda (zê) rojanê bînan, rojêde fîraze û bimbarek a. Sacîya germine kuwna bi herd. Can û rûh kuwno bi mexlûqatê rîyê herdî. Hurêndîya şînê zimistanî, şahîya hîr û bereketê wisarî serwer a. Seba ke tengasîya zimistanî ra reyînê ra, benî, dar û ber sijdeyê herdê derwêşî beno (*). Êndî destpêkerdena demsera wisarî ya.

Hawtemal de, sermîyanê kêyî sareyê gulirî (nifûs) kemerê destnîşan keno û sîvigî ya kî lojina banî ser ro nano ro. Hîrê rojan ra tepîya, binê kemera kamcî gulirî de lulik bivejîyo, rindî û xirabîye, hîr û bereketê kêyî yê a sere nefsê ê kesî ra giredaye yo. A sere her çî rîbalê eyî ra yo. Zerfetîyan pojenê, wenê.

Domanî, dormeyê banan û lojinan xêz kenê û awe verdanê re ser. Tayê cayan de, lojinan de adir kenê we. Kolîyan henî erzenê adirî ser, ke kilawine lojinan ra qîlozê rîyê asmênê keweyî bena. Gelo Hawtemal tedeyîyê xo ra NEWROZE nîya?

Seba ke eleqadarîya xo jubînî de est a, wazena ke bı çend çekûyan Çarşemên Hesava ya Kirmancanê Êzdîyan; Qereçarşeme û Hawtemalê Kirmancanê Qizilbaşan bışanî têver.

Êzdîyanê Rûsya mîyan de, edi aşma Adare de bi nameyê Çarşemên Hesava hîrê, tayê êlan de kî çar Çarşemeyî tê dime ênê fîrazkerdene. Çarşemeyê aşma Adare yê verênî ra “Çarşema Pêşîn (Oxirçarşem)”, ê diyîne ra “Axirçarşem”, ê hîrêyîne ra “Çarşema Kuloç (Qereçarşem)” û tayê êlanê Êzdîyanê Ermenîstanî mîyan de kî ê çarîne kerîno û cira “Hesen Pîrik” vajîno (Eskerê Boyîk; malpera Komela Kanîya Sipî.)

Edi (Oxirçarşem)” de -Kirmancanê Qizilbaşan de Çarşemeyo verên Qereçarşeme yo-, kêyan de werdên weşî ênê potene. Werdî ra şamîya merdan benê kêyan. Peroj, her kes serê banî ya kî verê kêberê xo de adir -Kirmancanê qizilbaşan de Hawtemalo Pîl de lojinan de- fîno ta. Adirî ser ro çing danê û kincanê xo adirî ser ro şanenê ro. Bi na yewe, guna, nêweşîye û tal-tenga xo ya sera kane adir de vêşnenê. -Kirmancanê Qizilbaşan de guna, nêweşîye û taltenge Qereçarşeme de şîlanerovetene ra rişînê de. Çarşemeyê didiyan kî ancî fênda ê verênî “Çarşema Pêşîn (Oxirçarşem)” êno fîrazkerdene. Gelo miqabilê Hawtemalê Qicî yo?

Çarşema Kuloç (Qereçarşem) ya kî Xanna Omerxali; Dema Nû): miqabilê Hawtemalê Pîlî yo. Na roje, lêweyê kerdananê corênan de Kuloç (bijike) hewt taman (ardî, ron, şit, şekir .. û êb.) ra mîşte kenê û Xadim (moreke ya kî nîşanêde bîn) kenê bi ci, rınd lunê ra û roja Çarşemeyî pojenê, roja Pancşemeyî kî sermîyanê kêyî, bi kardî bijike keno di lete. Cıra para wayîrê kêyî Mamereşanî. Boyik para wayîrê malê hûrdîyî Kirmancanê Qizilbaşan de Zariko/Sariko Şuyane, para wayîrê dawarî Gavanê Zerzanî Kirmancanê Qizilbaşan de Memiko Gawan, para wayîra cinîyanê dican û domanan Xatûna Ferxa, para Pîra Fate, para Şemsî.. û êb. (Xanna Omerxali) birneno ra û hona paranê gulîrê kêyî vejeno. Moreke -Kirmancanê Qizilbaşan de binê kemere de lulik- para kami de bivejîyo rindî û xirabîye, hîr û bereketê kêyî yê a sere nefsê eyî kesî ra giredaye yo.

Êlên nêmkoçerên ke wisarî rew şonê bi ware, -Kirmancanê Qizilbaşan de de şonê bi mezelan ser û hona vejînê wareHama êlên bînî nêmeyê aşma şeşan –Gestemerde/Gimgim de mabeynê 10-15 Hezîranede şonê bi mezelan ser.

Ez wazena hêketa ke Gimgim de şatîya, îta şima wendoxan de pare bikerî: Yew cinîye domanan nîyana. Şona bi lêweyê Male Kuzikî. Male Kuzik: "Meşte Hawtemal o. Nêmeyê şewe de dar û ber sijde beno. Zereyê to ke pak bo, ti vînena. To ke vînit, temezîya xo gilê dare ra gire bide, nega û miradê xo cira biwaze" vano. Cinîke a şewe re ci pîna. Vînena ke darî sijdeyê herdî bîyî. Temezîya xo gilê dare ra gire dana û negaya domanan cira kena. Roja bîne vînena ke darî bîyê çik û temezîye gilê dare ra giredaye ya. Bena dican. (Na mesela min rê Gestemerde ra Besa Kîyayê Mamî qese kerde. Çunde arşîvê min -Çeko Kocadag).

***Bergirî: Arif Sevinç***

www.arsivakurda.org

# Kurd alîgirê serxwebûnê nê

Piştî ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî biryara referandûma bo serxwebûnê girt, li tevahiya cîhanê meseleya serxwebûnê ket rojeva kurdan. Li her çar parçeyên Kurdistanê û dîasporayê gelek kampanya hatin destpêkirin û di pêşerojê de serxwebûn çavlirê ye ku berfirehtir di nava kurdan de bê şîrovekirin. Me li ser meseleya serxwebûnê bi nivîskar, hunermend, siyasetmedar, rojnameger û rewşenbîrên kurdan re şîrove kir.

**Hunermed Gani Nar:** Kurd evqas sal e ji xwînê têr bûne û bi hezaran êş kişandine. Serxwebûn mafê wan e jî, ku li xaka xwe azad bijîn. Ji ber vê yekê ez helwesta Mesûd Barzanî ji dil û can pîroz dikim.

**Nivîskar Hasan Bildirici:** Dive kurd li çar perçeyan bi hev re azad bibin. Li Rojhilata Navîn sînorên dagirkeran çêkirî ne. Bi ya min divê ev ji hev belawela bibin. Tiştê ku tirka bi hev be girê dide dewlet e, bo dewletê din jî rewş wiha ye. Dê kurd li çar perçeyan jî azad bibin. Serxwebûna başûr teqes e. Sekinandina li hember azadiya kurdan sekinandina li hember mafê mirovan e. Ev 35 sal e li penaberiyê dijîm û sedema vê dewlet e. Li cîhê ku dijîm her gundekî alek xwe heye. Ji ber vê ez piştgiriya Kurdistana serbixwe dikim. Dewleta tirk çi difikire, çi dike ne xema min e. Bo kurdan divê azadî û serxwebûn.

**Serokê Enstîtuya Kurdî ya Birûkselê Derwêş Ferho:** Çawa ku mafê hemû gelan heye bi heman awayê mafê kurdan jî heye ku çarenûsa xwe diyar bikin. Divê tu saziyek kurdan li hember vê dernekevin û piştgiriyê bidin.



Mafê Başûr, Rojava û Rojhilat jî heye ku bibin dewlet.

**Nivîskar Hasan Îrandost:** Divê mafê kurdan hebe ku çarenûsa xwe diyar bikin û biryara xwe bidin. Sibê ne diyar e ku dinya ji vê biryarê re bibêje çi lê xuya ye ku ew mesele bi aboriyê re girêdayî ye û bo meseleya neftê jî dinya bêje erê. Eev hinek girêdayî dewletên cîrana ye jî. Divê ev bi referandûmê bê kirin û kurdên perçeyên din jî tevlî vê bibin.

**Nivîskar- Hüseyin Narlı:** Ez wek prensîp serxwebûnê erênî dibînim. Ew encama deskeftiyên kurda ne. Ji hêla din ve divê polîtîkayên Îran û Tirkiyê baş bêne şopandin. Bihevkirin bi Tirkiyê re yan jî li gor nakokiyên li holê dibe ku zirarê bide perçeyên din. Eez pir hindik vîzyona Barzanî dizanim û rast dibînim. Dizanim ku vîzyonek wî ya kurdistanî heye lê metirsiyên min yên polîtîk hene. Helbet ev nayê vê wateyê ku piştgiriyê nadim serxwebûnê.

**Nivîskar Haydar Işık:** Em netew in, mafê her netewê heye ku çarenûsa xwe di destê xwe de bigre. Ku Kurdsitana Başûr biçe refeandûmê divê her kurd piştgiriyê bidê. Li Dêrsim digotin Miste- fayek hat em qetil kirin yek jî dê me xilas bike, ew jî Mele Mistefa Barzanî ye. Her çendî ez polîtîkaya kurê wî neecibînim ku me bigîne serxwebûnê, ezê bawer bikim di rêya bavê xwe de ye. Ez hêvî dikim ku îcar kurd bêne ba hev.

**Nivîskar Helim Yusif:** Serxwebûn ji bo kurdan mefekî rewa ye. Divê em nîqaşa serxwebûna Kurdistanê jî nekin. Mijara serxwebûnê li şert û mercan dinêre lê divê partiyên kurdan xwe li gor siyaseta netewî û navnetewî biguherînin û wisa serxwebûnê bixwazin. Ez wek nivîskarekî kurd ne mecbûrim li gor partiyan prensîbên xwe biguherînim. Min berê jî wiha bawer dikir, niha jî wisa bawer dikim û dê wiha bawer bikim. Ji bo çareseriya kurdan rê ya herî baş serxwebûn e.

**Hunermend Aslika Qadir:** Ku bibin asteng jî dê Kurdistan ava bibe. Wek her gelî mafê kurdan jî heye ku bibin dewlet. Kurdistan ji ariya xwe ava bibe. Min ji rojnameyan xwend kesek gotiye Kurdistan şerm e. Tiştekî wiha nabe. Divê pêşî em dewleta xwe ava bikin dû re dinyayê xilas bikin. Ez ji tu partiyê nîn im, kurd im û behsa rastiyê dikim. Divê kes avê şêlû neke. Divê beriya her tiştî bijî Kurdistan. Bedbextî ye ne yekbûna li Rojava. Divê kurd yekbin.

**Rojnamevan Hasret Birsel:** Perçeyek ji çar perçeyan; li Başûr fikra serxwebûnê jî min dike kelecanê. Hhewce nake ku em hevokên mezin bêjin, tehlîlên dirêj bikin an jî bersiva çimayê bidîn. Kêfa min ji kesên ku dibêjin "çima serxwebûn?" re nayê. Qasî pirsên 'çima ba diheje, çima roj hiltê, çima rengê te spî ye an jî çima sor e' beredayî ye. Pirsa, 'li welatê xwe çima evqas mirov azad nabin' baştir e. Eem behsa gelekî ku leşkerên wî, serokê wî, parlementoya wî, çavkaniyên wî yên surîştî hene dikin. Divê bi gotinên 'Iraq hê ne amade ye', şert çênebûne pêşiya kurdan neyê girtin. Bi milyaran bersivê pirsa 'çima serxwebûn' hene lê ji bo min ya herî girîng ev e; Ev xeyala me ye, xeyala dayîk û bavikên me, kalik û zarokên me û miriyên me ye. Ev emcama bedelên ku me daye ye û êşa me kişandî ye. Ez dixwazim vê xeyalê bibînim. Û ji dil bawer dikim ku azadiya perçeyekî azadiya perçeyên din jî dê bîne.

**Serokê Cimeata Kurdan- Memet Tanrıverdi:** Em serxwebûna Kurdistanê diparêzin û piştgiriya serxwebûna Başûrê Kurdistanê dikin. Îro ku dewletek we tûnebe hûn tenê ne, ji ber ku ez li der ve dijîm dizanim. Ku dewletek te tunebe tu bê xwedî û tenê yî. Qasî serxwebûnê tiştekî xweş tune û fikra dewleta netewî kevn nebûye. Çawa ku pêdiviya însana bi nan û avê hebe pêdiviya kurdan jî bi dewletekê heye. Mafê dewleteke serbixwe mafekî bingehîn e. Girîng nîne ku ev dewletek yekbûyî be. Daxwaza me ew e ku Kurdistan serxwebûna xwe bi dest bîne.

**Serokê Koma Keskê Munîhê Gülseren Demirel:** Sed sal berê Fransa û Îngîltere bi peymana Sykes-Picot Kurdisran li gor berjewendiyên xwe parçe kirin. Paşê ev rewşa perçebûyî ket fermiyetê. Hêzên ku Kurdistan dagir kiribûn hemû mafên kurdan înkar kirin, tu caran kurd bi xwe re wek hev nedîtin. Kurdan tu caran dagirkirina welatê xwe qebûl nekirin û her dem serîhildan, ji bo vê meriv çaryeka sedsala dawî binêre bese. Li vê xakê komkujî, kuştin û koçkirinên mezin hatir jiyandin.

**Rêvebirê AKIN Kani Xulam:** Di nava kurdan de guftugoyên diyarkirina çarenûsa xwe hetanî şerê yekem yê cîhanê diçe. 29. Serokomarê Amerîkayê Woodrow Wilson navê kurdan neda lê sedema ketina xwe ya şer, wek gelên binketî yê piştî împaratoriya rake nîşan da (Madde 12) Lenîn heman tişt ji Ewropa dixwest. Paşê Netewên Yekbûyî ev maf xistin tûzika xwe. Di navberê de sed sal derbas bû lê hê jî kurd nikarin jê sûd vergirin. Sedema wê ev e ku her însan melek nîne û di nava peyman û rastiyê de ferqek mezin heye. Bi nîqaşên serxwebûna Başûrê Kurdistanê emê vê ferqê ji holê rakin. Hewce nake em ecele bikin. Ku sêveke xam tu ji dara wê jêkî ewê tirş bibe. Ku em bi perçeyên din re bidin ber hev Başûr sêvek bihorî ye. Divê di qada navnetewî de xebatan bike. Aqûbet li serê perçeyên din.

**Nivîskar İbrahim Seydani:** Wek her erdnîgar û miletên din mafê kurdan jî heye ku li Kurdistanê azad bijîn. Ev mafê ku Xwdayê dilovan daye wan. Ku kesek bawermend yê îmanê bi pirtûkên xwe yên pîroz tînin qet nekevin nîqaşa vana. Piştî ku li başûr vêya rû da di serî de kurd, dû re hemû dinya rêz li ber bigre. Kesên ku li hember serxwebûna Kurdistanê derdikeve kî dibe bila bibe li hember hebûna xwe derdikeve.

**Nivîskar Işık İşcanlı:** Xeyala her kurdî ye ku li perçeyekî Kurdistan'eke serbixwe çêbe. Ev nîşandana zanîna kurda ye li hember asmîlasyon û zordariya bi sedan salan. Ev pîvanên netewbûnê ne. Di erdnîgareke mezin de û di bin dagirkeriya çar dewletan de hevgirtina hişekî yekbûyî di warê sosyolojîk de divê were kolandin. Dema ku em xwe bigîhînin xeyalên xwehatî ye, jiyan dewletbbûnê dixe pêşiya me. Her çiqas polîtîkayên kurdan yên bi gelên din re hebe jî ji vê xeyala xwe paş ve nazivirin. Dewletbûna kurdan li gor her tiştî erênî ye. Li Rojhilata Navîn niha tevlihevîyek mezin heye, di vê demê de ku meriv bikare dewletê ava bike hûnereke mezin eç Niha kurd xwedî wan îmkanan in ku dewleta xwe ragihînin.

> **Beriya demekê di axaftinekê de Serokwezîr erdoğan diyar kiribû ku dê girtîgehê xirakin û li cîhê wê dibistanekê avakin. Piştî vê gelek saziyên civakî ku dixwastin girtîgeh bibe mûze ketin nava çalakiyan û bi kampanyeyên îmzeyan nerazîbûn nîşan dan. Dû re jî kamyanya ya daxwaza mûzeyê destpê kiribû**

**Nivîskar Kadîr Amaç:** Beriya her tiştî dixwazim vê rastiyê bidim zanîn; dijminê welatê me û netewa me her roj ji dilê me re dafika datînin. Ku em ji netewa xwe heznekin, ku em berpirsiyariya dikeve ser milê me em bi cîh nîn in dê her roj perçeyekî ji me bibin. Dewletbûna Başûr destkeftiyek baş e. Di serî de pirsgirêk wê derkevin. Ku kurdistan polîtîkaya netewî û zanînê bişopîne, rêz li kêmjimarên din bigre dê bibe wesîle ya yekbûna hemû kurdan.

www.arsivakurd.org



## Li Qesra Spî anket a serxwebûnê

Xebatên bo serxwebûna Başûrê Kurdistanê berdewam dikin. Di hêla navneteweyî de bi teybetî qampanye ya di malpera fermî ya Qesra Spî de deng veda

Di malpera Qesra Spî de di demek kin de hejmara îmzeyan gihîşt 86 hezarî. Armanca qampanya yê berhebûna 100 hezar îmze ye. Ji ber ku ew hêjmar meseleya serxwebûnê ber Serokê Emeriqa'yê. Di çarçoveya qampanya yê de ji Obama hat xwestin ku bo aramiya herêmê serxwebûna Kurdistanê bipejirîne.




Qampanya di medyaya navnetewî bi teybetî ji di medyaya kurd û tirkan de gelek cîh digire. Di derbarê mijarê de nûçeyên bi sernavê, "Di malpera Qesra Spî de qampanye ya serxwebûna Kurdistanê" hatin weşandin.

Herwiha di malpêra Change.org de jî qampanyeyek din hate despêkirin. Kampanye ya îmzayan ku bi sernavê "ji Kurdistanê re serxwebûn" jî rastî eleqeyek germ tê û dê encamên vê qampanye yê jî pêşkêşî hukumeta Îngîlterê bê kirin. Ew qampanya ji aliyê Rêvebirê Platforma Piştgiriya Netewa Kurdistanê Rizgar Elî ve hat destpêkirin. Elî destnîşankir ku armanca wan ew e ku mijara serxwebûnê bixin rojeva Îngîlterê.

Ji Başûrê Kurdistanê piştgiriya qampanya îmzayê

Qampanye ya ku di malpera Qesra Spî de hat destpêkirin li Başûr jî di rojevê de cihekî fireh digire. Beşdariya qampanyeyê li vir di asteke bilind de ye û di Zanîngeha Soranê de bo qampanyeyê xebata têne kirin. Di bin çavdêriya pispor û zanyaran de hejmara îmzeyan gihîşt 83 hezarî. Ji ber ku biryara referandûmê hatibû girtin û di vê çarçoveyê de xebatên polîtîk têne kirin, tu qampayayên ku navend Kurdistan be heta niha nehatine destpêkirin. Çavlirê ye piştî ku dema referandûmê diyar bû dê li kolanan bo vê qampanya û çalakiyên mezin bêne kirin. Herwiha tê zanîn ku li Başûr hema bêje yeko yek herkes alîgirê serxwebûnê ye. Kêmnetewên ku li vir dijîn jî din av de, her welatî bo serxwebûnê nêzikahiyên erênî nîşan dide. Bi taybetî jî keldanî û sûryanî gelek alîgiriya serxwebûnê dikin. Wek gelê Başûr, çapamenî jî derbarê serxwebûnê de hesas e, her daxuyanî di çapamenî xebatên bo serxwebûnê bi berfirehî cîh digire.

# Bendav wê Hezo'yê wêran bikin

Li navçeya Hezo ya Êlihê, 5 bendav di heman geliyê de tên çêkirin. Di geliyê Pisyarê de ku her 7 kîlometreyekî bendavek tê çêkirin, hate zanîn ku ev bendav bi boneya "ewlehiyê" tên çêkirin lê heta niha tu rêxistinên civakî yên sivîl bertekek jî nîşan nedaye.

Li navçeya Hezo ya Êlihê, yek jê ji bo avdaniyê bi tevahî 5 bendav di heman geliyê de tên çêkirin. Ji bilî Bendava Pisyarê ku li ser ava çemê Pisyarê ji bo avdaniya erd, di sala 1997'an ve hatiye çêkirin, di nava 7 salên dawî li ser heman çem û geliyê Pisyarê de bendaveke mezin a bi navê Bendava Garzanê, her wiha 3 bendavên biçûk ên di her 7 kîlometreyekê de tên çêkirin.

Bi çêkirina bendavan re xweza tar û mar dibe!

Dola Pisyarê ku bi çêkirina bax û bexçeyan, her wiha di hêla xwezayê de bihûştek tê de veşartiye, ji ber çêkirina bendavan ji ber makîneyên kar dixebitin, xirabkirina qeraxa çem, dar û berên di bin mana binê ava bendavê de, xwezaya heremê tar û mar dibe. Bendava Garzanê ku di 2012'an de av tije bibû gundê Asê û mezrayeke wê, gundê Binêk û mezrayeke wê bi tevahş3i 4 gundên li peyî neçar mabûn ku gund vala bikin û gelek bax û bexçe jî di bin avê de mabûn. Bendavên ku ji hêla Şîrketa Enerjî ya Nasiroglu ve tê çêkirin, bi bûhayeke pir hindik ji bo her malbateke 15 hezar TL wek e berdelên zirara gund dabûn û gundan dabûn valakirin.



Bendav bi boneya 'ewlehiyê' tên çêkirin Ji her 5 bendavan yek jê ne di nav de ku ji bo avdaniya erdan ji nimêj ve hatiye çêkirin lê her 4 bendavên din santralên enerjiyê wê neyê çêkirin. Hate hînbûn ku Bendava Garzanê jî di nav de her 4 bendavên din ên biçûk jî ku di geliyê Pisyarê de hatine çêkirin, bi boneya "Ewlehiyê" hatine çêkirin..

Bi çêkirina her 7 kîlometreyekî bendavekî, di dema çêkirinê de texrîbkirina xwezayê, ji ber bi sedan bax û bexçe di bin av û xirabeyan de dimînin jî, ne ji hêla hemwelatiyan û ne jî saziyên sivîl ên têkildarî mijarê de heta niha tu bertek nehatiye nîşandan.



## Kerkûk, Beyt ul Muqedes a kurdan

# Bendbaziya navbera Enqerê û Tehranê

**Alan kaval**

Ji xeynî Wê, Kurdên Îraqê hevgirtî û yek nînin ku bernameya wan hevbeş û bi tefahum be. Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) û Yekîtî ya Nîştîmanî ya Kurdistanê (PUK) heya radeyekî partiyên hikûmî ne û xwedî hêzên çekdar in. Ev zêdetir li berjewendiyên xwe dinêrin û carna di bereyên cuda da cîh digirin. Di wê rewşê de (PDK) xwedî petrole û ev yek dibe sedem ku jiber bilind firînên Tirkiyê di warê enerjiyê de, di rêza dîplomatîk a Ankarayê de cîh digire.

(YNK) jî ku di nav xwe de pirsgirêk û çend desteyî heye, bi Îranê re peywendiyên baş hene û bi wî awayî jî nêzî (PKK) ye. YNK muxalifê dest têverdana PDK li Kurdistana Tirkiyê û bi taybet Kurdistana Sûriyê ye ku dixwaze di bin bandora hevpeymanêmn xwe yên herêmî de be.

Tevî ku rayedarên herdu aliyan hewla kêm kirina nakokiyan didin, rewşa ku Îraq têde dest û pêyan diqute, nakokiyan zêdetir dike.

Li gor baweriya Fermandeyê Giştî yê Wezareta Pêşmerge, Cebar Yawer (YNK) bi hişmendî bi artêşa Îraq a federal de ku çend deh kîlometrên beriya sînorê Îranê bicîh bûne di hevkariyê de ye û wan kontrol dike. Hêzên (PDK) ku li ser herêmên bakurê rojava zal e, zêdetir dixwaze ku bi beşek ji aliyên Sune yên ne radîkal rêkeftinê çêbike. Herwiha Kerkûk ku bi binkeyên eskerî û hemû çavkaniyên xwe di sînorê Îraqa Erebî û Kurdistanê ye, herwiha li ser hêla peywendiya di navbera herêmên d bin desthilata (YNK) û (PDK) ye. Piştî şikesta rejîma Sedam û herwiha vekişîna artêşa Îraqê, ev bajêr bûye navenda rikeberiya herdu partiyên serekî yên Kurdistanê.

Sînorê nû hêleke ron nîne

Meyla perçe bûnê li hin herêm Bexdayê jî bihêz bûye ku xwedî nifûseke curbicur û şerê li ser wê ye. Çend desteyî ya heyî di nava Kurdan, Turkeman û Ereban de, cudatiyên olî jî tê zêde kirin, ji ber ku ev sê civakên qewmî di nava xwe de jî dabeşî civaka Şîe û Suneyan bûne.

Di walatiya di navbera kontorolên ewlekariyê de, bi awayê hevbeş û cuda ji aliyê YNK û PDK ê ve, kulîlkên peyda bûna hin mîlîşiyayan tê dîtin ku xwe weke hereketeke din li hember zêdetiya baweriyên cuda yên olî û qewmî binav dike. Ev li gor girêdayîn bûna xwe, endamên hêzên ewlekariya pêşîn a federal dipejirînin. Her yek ji wan grûbên çekdar hin hevpeymanên dûr li dijî dijminên xwe yên nêzîk peyda dike.

Bi wî awayî, sînorê nû yê Kurdistanê ne hêleke ron, belkî herêmeke pêkhatî ji aliyên cuda û wêran ku ji xalên kontrolê û heremên dorpêç kirî ye ku hin rayedar di dereceya yekem de li ser bingeha hêzê, bi hevre hevkariyê dikin, hevdu qebûl nakin, bi hev re di kêbirkê dene yan bi hevre şer dikin. Di deh kîlometriya navenda Kerkûkê de ku jiyana asayî li kêleka şer berdewame, herêma Tize ku ji şêniyên Turkeman û Şîe pêktê, dîmenek ji rastiyê dide dest. Gundê kêlekê, Beşîr ku şêniyên wê jî Turkemanên Şîe ne, heyamek berê ji aliyê qebîleyên Sune ve hatiye girtin ku di sala 1986 ê de ji aliyê Sedam Husên ve li vêderê hatibûne bicîh kirin û di sala 2003ê de cardin ji aliyê şêniyên rastînên xwe ve cardin hatibû vergirtin. Bi sulteya DAÎŞê, Suneyan derfet dîtine ku dest danêne ser zevî û malê cîranên xwe. Di kolanên bêdeng ên Tizeyê de hin ciwan di hat û çûyê dene ku diçîne mizgeftê. Li wêderê nûnerê herêmî yê Ayetulah Sîstanî bi cilê eskerî û şaşika oldaran zilaman ji bo cardin bidest xistina Beşîrê û cîhadê vedixwînin. Di hevşa mizgeftê de, endamên navsal yên partiya Şîe ya El-Deiwe ku berê li Îranê di sûrgûnê de bûn û bi kum û rihê pasdarên şoreşê vegeriyane diyarin. Ev xwe hazir didikn ku di civînekê de beşdar bibin ku ji aliyê çekdarên grûba Şie ya Bedr e ku şeş meh berê ji aliyê hikûmeta navendî hatiye ava kirin. Di çend kîlometriya wî cihî de, tanekek serdema Yekitiya Soviyeta berê û çend otomobêlên zirxî ku di sala 2003ê de ji aliyê pêşmergeyên (YNK) ve hatibûn bidest xistin û nêzî 100 çekdarên Kurd ku li ser belemekî ku Tezeyê ji aliyê din cuda dike têne dîtin.

Şandek ji (PKK) ku li herêmê diborin, alek bi wêneyê serokê xwe Abdulah Ocalan ku li Tirkiyê girtiye li dîwar dane. Dûrtir, li rex avrûyê ku nêzî deh metran pan e, xîveteke UNê deh nûciwanên çekdar ku li jêr alekî de ku navê Elî li sere ji tîrêjên rojê diparêze. Nûciwanek ku di di sala 2003ê de deh sal î jî nebû, Kîlaşnîkofek xistiye stuyê xwe û hin guhertin têde çêkirine ku bişibe şekên Amerîkî. Çoxeke eskerî û kirasekî bedel yê Olympic a Lionê li bere, bi polîsekî fîrarî wêneyan dikşîne ku bi li ser daxwaza Sîstanî ji bo cîhadê hatiye , di rewşekî de ku li dûrdestan çend gule bo aliyê çend hedefên nediyar têne teqandin.

*Çavkanî: Le Monde Diplomatique*
*Ji farsî: Dêrsim Oremar*



# Li Amedê "Muze ya 5 No'lu"

Girtîgeha Jimara 5 ya Amedê ku di serdema derbeya leşkeri ya 12 Îlonê de, li vê derê kiryarên dij mirovane li girtiyên siyasî yên kurd hate kirin, bi dehan girtî hatine qetl kirin û bi dehan jî seqet man, dibe mûze. Piştî ku ji bo ev girtîgeh bibe mûze 100 hezar wajo (îmze) hatine berhev kirin û biryar hate dayin ku Girtîgeha Amedê ‘’Weke sembola aştî û biratiyê bibe mûzeya mafê mirovan’’. Wezareta Bergiriya Neteweyî ya Tirkiyê diyar kir ku ev girtîgeha ku mafê mirovan lê hatine binpêkirin bibe mûze wê têkariyê li aşitiya civakî bike.

Hukûmeta AKP’ê bersiva erênî da wan kampanyayên ku li Kurdistanê ji bo mûzekirina Girtîgeha Jimare 5 ya Amedê hatine birêvebirin û bawerî wisa ye ku di qonaxa "rû bi rû bûna raboriyê" ya Pêvajoya Çareseriyê de roleke giring hilbigre. Lê belê, kesên ku rû bi rûyê kiryarên dij mirovane bûne û kesûkarên mexdûran daxwaz dikin ku kesên berpirsê îşkencekar û komkujiya girtîgehê, bêne darizandin.

Wezareta Bergiriyê di nivîsa xwe ya bersiva Komisyona Daxawznameyan ya Parlemenê de diyar dike ku; Girtîgeha Amedê ji sala 1980 heta 1988'ê di bin navê Muduriyeta Girtîgeha Ceza ya Taybet ya Leşkerî û di bin banê Fermandariya Kolordî ya 7. de bû û piştî sala 1988'ê rasipartiye bin berpirsiyariya Wezareta Dadê. Ji ber vê wê nêrîna Wezareta Dadê diyariker be.

**"Ji bo bibe mûze taybet emê piştgiriyê bikin"**

Di nivîsê de wiha hatiye gotin: "Civak xwedan wê baweriyê ye ku Girtîgeha Leşkerî ya Amedê de, ku ji aliyê rejîma derbekar ya leşkerî ya 12 Îlonê ve weke Girtîgeha Leşkerî ya Taybet ya Rêveberiya Awarte dihate bikaranîn û tê de kiryarên dij mirovane yên hatine encamdan, şopên giring di hizra mirovahiyê de hêliştiye. Ji bo di welatê me de careke din êşên bi vî awayî neyên jiyan kirin, bi şêweyekê sembolî jî be, her weke girtîgeha Ulucanlar, ger ev girtîgeh jî bibe mûze wê mifatir be û wê têkariyê li aştiya civakî bike.

Di nivîsa bersiva Wezareta Geştûguzarî û Çandî de jî hatiye ku li Amedê xebatên çêkirina yek ji mezintirîn mûzexaneya Tirkiyê ber bi qedandinê ve hatiye. Her wiha hate diyar kirin ku pêwîst nake Girtîgeha Amedê bibe mûzeyeke di bin banê wezaretê de, dikare bibe mûzeyeke taybet û her awayî alîkariya kar û xebatên zanistî û teknîkî bike.

Di vê navberê de gelek kesên ku di vê girtîgehê de rastê tade û skenceyên giran hatine û bi salan di wir de ha-



tine girtin, biryara di derbarê müzeye de wek destkeftiyekê nirxandin û xwestin melzeme û aletên ku skence pê hatiye kirin, wêne û nasandina skencekaran, navên wan û herwekîdin dîsa nav û danasîna girtiyên wê demê, eşya û wêneyên wan û bi tevahî ew dem bi her awayî di müzeyê de bê bi cîhkirin. Girtiyên zindanê nêrînên xwe bi rojnameya me re par ve kirin.

**Altan Tan**

Hasasiyeta hemû kurdan ew e ku ew der bibe mûze. Li wir çi qewimî, çi hat kirin divê bê zanîn. Divê ev ji nifşê nû re bê gotin. Bo ku neyê ji bîrkirin divê ev zindî bimîne. Ku bîra neteweke were jêbirin dahatûya wan û çanda wan namîne. Divê kesên ku berpirsiyarê kiryarên Zindana Amedê ne kesên mexdûr bêne rû bi rû kirin. Divê Qomîsyano Lêkolînkirina Rastiyan bê demezrandin. Wek tu tişt nebûbe em dikarin pêşerojekê ava



bikin, piştî wê ewê bi xwe bimeşe. Wezareta dadê wê kar bigre ser milê xwe û li parlementoyê komîsyonek bê avakirin. Li hemû cîhanê mûzeyên bi vî rengî hene; mûzeya komkujiya cihûyan heye, ya komkujiya ermenan heye. Divê di müzeye de aletên pê skence hatiye kirin jî cîh bigirin.

**Halide Dündar**

Bo ku carekdin êş neyê kişandin ev biryar cîhê kêfxweşiyê ye. Divê nifşê nû bizanibin li wir çi qewimiye. Her tişt tê jibîrkirin, bi mûzeyê ev xetere ji holê radibe. Bi tevayî rû bi rûbûn nebû, piraniya dozan ketin ber derbasbûna demê. Bo rû bi rûbûnê divê kesên berpirsiyarên wan kiryaran lêborînê bikxwezin. Ev 30 sal e em ji vê derûniyê xilas nebûne, divê ev bi awayekî bê derbaskirin. Ji ber ku kesî qawîşa jina nenivisî di demek nêz



de pirtûka min ya li ser qawîşa jina derkeve. Di mûzeyê de mertag, cop û alavên skenceyê dibê hebin. Çîroka girtiyên li wir divê di mûzeyê de cîh bigrin. Di ber re jî kesên ku ew skence û karan kirine jî divê cîh bigirin. Wêneyên wê demê bo famkirina mijarê girîng in û divê hebin di müzeye de. Bi kurtasî ku kesek çû wir divê bikaribe di hêşê xwe de wê demê bibîne. Ez dixwazim herim mûzeyek bi vî rengî, me ew skence û zordarî dît in û em dixwazin bi wan re rû bir û bibin. Ez biryara ku ji bo mijarê hatiye girtin wek destkeftiyekê dibinim.

**Parêzer Cemşit Bilek**

Dema ku em wek parêzer diçûn wir me di bin nêrîna leşkeran hevdîtin bi girtiyan re dikir. Me nikaribû ku em bi rehetî biaxivin. Bo mînak; min carina gazî girtiyekî miwekîl dikir, kengê bihata di nava xwîdanê de bû. Rojekê ji min re got, ewqas gazî min neke. Min fam nedikir ku çima wiha dibêje. Mehmetcan hebû, demekê serokatiya CHP ya Sêrtê kiribû. Ji min re got ez bawer nakim ku ji vir sax derkevin tu vê seata min bide malbata min. Rojekê Necmettin Büyükkaya mafê axaftinê di dadgehê de girt, got birêz dadger wekê hûn dibînin niha siheta min di cîh de ye lê ewê di girtîgehê de min bikujin û bi hin tiştê din ve girê bidin.



Em parêzerê wan bûn me bawer nedikir. Bi mûzeyê qet nebe van tiştên ku qewimîne derbasî nifşên nû dibin. Di gelek dozan de tu kesî ceza negirt, qet nebe bi vê rêyê di wîjdanan de dibe ku rehetiyek çêbe. Ku çi di vê girtîgehê de hatibe jiyandin divê were nîşandan. Lê tiştekî wiha heye, ne em dikarin hesabê hemû tişta bipirsin ne jî ew dikarin vê hesabê bidin. Ku mûzeyek bê çêkirin ezê herim ziyaret bikim helbet.

**İrfan Babaoğlu**

Beriya her tiştî em hêvî dikin ku ew proje bo hilbijartinên neyê kirin. Ji xwe ev çend sal e em têdikoşon bo mijarê. Em dibêjin ku pêdiviyek civakî ye ku girtîgeh bibe mûzeya bîrê. Ku hukumet hatibe vê xalê ji bo kesên ku ew êş kişandine cîhê kêfxweşiyê ye. Ev tenê ji bo me ne, ji bo nifşên nû jî pêdiviyek e. Mînakên bi vî rengî li welatên din jî hene. Gel, bo ku carek din tiştekî bi vî rengî nebe diçe li wan deran digere. Pêdiviya gelê kurd û ya dewletê bi vê heye. Kesên ku ev êş kişandine li holê ne



lê kesên berpirsiyar ne diyar in û tu ceza nekişandine. Ku rewş normalîze bibe ew jî dê li çewtiyên xwe varqilin û werin lêborînê bixwazin. Mûzeya ku bê avakirin divê ne wek Sincanê be. Sincan bûye saziyek dewletê. Li girtîgeha Diyarbekirê pênç qat hene û divê ev her pênç qat jî bibin mûze. Ev ne karê sembolîk e. Ji xwe dewlet bi vê nizikbûna xwe divê destê xwe nedê. Li wir bi tevahî gelê kurd hat skencekrin û divê ev bi tevahî di girtîgehê de cîh bigre.

www.arsivakurd.org

## Mirinek pêşwext û helbestên veşartî

# Serda Selahaddînê Gimgimî

**Aziz Tekin**

Ji bo helbestvanan seranserê jiyanê hestiyarî û xemgînî ye. Helbest ji birînên nekewantî tê û helbestvan zevî ya birînan e. Tevî ku her tişt bo helbesvan giran e, betbextiyeke ku tê serê hin helbestvanan jî, wendakirin an jî wendakirina helbestên xwe ne. Gelo xwînêr bi bêsînoriya xemgîniya helbestvanekî/ê bigîhêje da kul i du helbestên xwe yên wenda digirî? Hin helbestvanan ji tirsa serdestan helbestên xwe şewitandine. Hinan jî bi sedemên cûda helbestên xwe avêtine bîr û avên bê ser û ber. Hinan helbestên xwe danîne cem nas û dostên xwe lê ew jî wenda bûne yên ku mayî jî piştî mirina nivîskar hatine belavkirin an jî di cihê xwe de bin ax bûne.

Serda Selaheddînê Gimgimî jî ji wan kesane ku helbestên giran buha nivisîne lê hîn jî nehatine çapkirin. Helbestvanê xembar û keser dirêj ku di jiyana xwe de pir nedihat naskirin, di demek kin de bi dîwana wî kû dê çap bibe ya bi navê 'Derdê Welat' dibe mêvanê helbest hezan.

Birayê Serda Selaheddîn ku pêşgotinek ji dîwana wî re nivisiye de dibê: "Diya min digot; di erdhêjê de (erdhêja Gimgimê ya di sala 1946'an de) Selaheddîn sala xwe tije kiribû û êdî hêdî hêdî bi rê ve diçû." Li gor van gotinên diya Serda Selaheddîn em pê derdixin ku di hundirê sala 1945'an de hatiye dinê. Cîhê ku lê hatiye dinê navê xwe daye paşnava Serda Selaheddîn. Li gor nasnameya fermî navê Serda Selaheddîn wek Selahttin Gümgüm tê nivisinadin. Lê di helbestên xwe de tu car ew nav bikar neanî ye, bi piranî mahlasa Serda, Serda Selehaddîn li bin helbestên xwe nivîsî ye.

**Hişen zelal, perwerdahîyek qewîm**

Serda Selaheddîn hetanî heft saliya xwe li Gimgimê li nik malbata xwe dimîne û li gel bavê xwe perwerdahiya Quranê dibîne û li wir xitim dike. Li gor vegotinên birayê wî piştî ku heft saliya xwe dibore bavê wî biryarê dide ku wî bişîne medreseyan. Bavê wî ji ber ku êdî derfeta ku bixwe pê re mijûl bibe nabîne û dixwaze ku kurê wî perwerdahiyake baştir bibîne vê biryarê distîne. Bi vê niyetê Serda Selaheddîn cara pêşî berê xwe dide medreseya Mala Mele Mehmûd ya li Gundê Xandilis'ê. (Karaköy) Li vê derê qasî salekê dimîne. Piştî ku bavê Serda Selaheddîn pê dihese ku kurê wî ji alî xizmên wî ve di karên din de tê xebitandin wî paş ve tîne û dişîne hêla Kop û Milazgirê. Serda Selaheddîn piştî perwerdahiya gundê Xandilisê hetanî dawiyê li medreseya Seydayê Mele Sadiq dimîne û li wir perwerde dibe. Li gor ku em di lêkolînên hêja yê Nedîm Dît ya bi navê "Tehlîlên Stran û Helbestan 1" hîn dibin Serda Selaheddîn di dibistanên fermî yê dewletê de perwerdahî nedîtî ye lê dû re ji derve destûrnameya dibistana sereteyî û ya navîn bi dest xistiye.

**Nameya wî ya di Rojnameya Dicle Fıratê de**

Piştî ku serhildana Dêrsim dest pê dike û Bakûr dikeve nava bêdengiyê Rojnameya Dicle Fıratê di 1'ê Kewçêra 1962'an de derdikeve. Rojneme hetanî heyşt hejmaran derdikeve û bi desteserkirina rojnameyê re xwedî û edîtorê wê, Edîp Karahan tê girtin. Rojname nameyek Serda Selaheddîn di hejmara 6'an de çap dike. Serda Selaheddîn di nameyê de wiha dibê, "Ji bo Mûdiriyeta Berpirsiyar ya Rrojnameya Dîcle û Firatê; Rojnemeya we ku em dizanin bi kedek mezin derdikeve, em bi eleqeyek mezin dixwînim. Ji bo vê keda we spasî û mineta xwe ji we re pêşkeş dikim. Ligel rêz û silavan. Selâhattin Gümgüm/ Varto."

Ji vê nameya Serda Selaheddîn em pê derdixin ku di dema xwe de bi siyaset û netewperweriya kurd re têkildar bûye, ji xwe di pêşgotina dîwana Serda Selaheddîn ya ku tê amadekirin de birayê wî dibê, "Pisxaltiyê min Mele Meheme (Mehmet Özkan) ji min re wiha got; "Ez bi mirina pisxaltiyê xwe Selahaddîn gelek dem şûn de li Riha'yê di civînekê de hînbûm. Wan deman telefon tunebûn, me nikaribû zû têkilî daniya. Bavê min bo ku ez neqehirim derbarê mirina pisxaltiyê min de agahî nedabû min. Min li Riha'yê meletî dikir. Civînê de serokê TKDP (Partiya Demokrat ya Kurdistan Tirkiyeyê) Seîd Elçî got ku; Gimgim par felaketek pir mezin jiya, di erdehejê de 3.000 kes wendakir lê felaketa ku îsal jiya ji felaketa erdehêja par pirtir bû. Lewra Selaheddînê Gimgimî çendek berê jiyana xwe ji dest da. " Serda Selaheddîn di salên xwe yên dawî de vedigere Gimgimê hevaltiyê bi kurê Xalid Begê Cibrî, Mehmud Beg re datîne, dema xwe bi piranî bi wî re derbas dike.

**Naveroka helbestên Serda**

Helbestên Serde Selahaddîn ku bi wezna beyta hatiye nivisandin û li gor arûzê hatiye rêzkirin. Di helbestên wî de bi rehetî bandora Melayê Cizîrî û Ahmedê Xanê xuya dibe, helbestên heyî yên ku min xwendî bi piranî ji hêla mijar û nêzikbûna mijarê de dişibe van herdû helbestvanan. Ji xwe ji hin heval û dostên xwe re gotiye ku; "Ez ê Melayê Cizîrê di warê helbestê de derbas bikim." Mijara helbestan; heskirina welat, xweşiya yarê, daxwaza azadiyê, qehrementiya gelê kud û lehengên kurd û hwd e...

**Emrê ciwan, salên dawî...**

Piştî ku Serda Selaheddîn perwerdahiya xwe ya medreseyan diqedîne du salan li Stenbolê dersên erebî dide. Di 19 saliya xwe de nexweşiya kêmasiya gurçikan lê radibe. Bi qasî du mehan li Nexweşxaneya Hasekî ya Stenbolê dimîne û ji wir derbasî gundê Avrêzê dibe û demeke kin li wir melatiya gund dike. Dû re li Gimgimê katiptiya Miftîgehê dike. Piştî wê li Erziromê di nexweşxaneyê de tê dermankirin û di 22 saliya xwe de di 31'ê Tîrmeha 1967'an de jiyana xwe ji dest dide. Ku Selaheddîn jiyana xwe ji dest dide lênûska helbestên wî dikeve destê xalê wî Şêx Elbaqî. Pismamekî xalê wî beriya 12'ê Îlonê van helbestan dinivîse û li ba xwe vedişêre. Piştî ku birayên wî pê dihesin ku helbestên wî veşartîne hewl didin ku wan wek pirtûk çapkin. Helbestên ku bi alfabeya erebî hatine nivîsîn li latînî zêde dikin û piştî amadehiyên din dîwana Selahaddîn niha li ber çapê ye.



## Helbesta Serda: Cejn

Siba cejnê li dergâhê me yar nîne nizam bo çi/Gelek keyf û gelek şahî, me par nîne nizam bo çi/ Dixwest karê me zewq û ken, sema û reqs û govend ba/Dixwest em jî biban rewşen, me axîn e nizam bo çi/ Dibînim xelq dikin şâhî, dikin cejnê bi hev pîroz/Dikin zewqê li her cahî, me dil kîn e nizam bo çi/Me dil wek kozikê ârê, di şew'te mislê tendûrê/ Di şûna gul di dest xarê, me her şîn e nizam bo çi/Hemî dunya hemî âlem, bi kêyf û îşwe nin vêkra/Ne cejnêm hem ne sersalêm, me tişt nîne nizam bo çi/Tu wek tîrek ji agir bû, dilê Serda xisar çêbû/Dijê me tim li me pir bû, me nedîne nizam bo çi.

Dignûg (Milazgir), 20.02.1965

www.arsivakurd.org





# Ramanên Beşikçi bi saya weqfê li cîhanê belav bûn

**Azad Xanzade**

Weqfa İsmail Beşikçi ku di heftê Rêbendana 2011'an de hatibû avakirin di nava du sal û nîvekê de bi dehan çalakî, proje û sempozyûmên cihê cihê lidarxist. Her roj bi dehan kes ji Kurdistan û ji cîhên cihê tên pirtûkxaneya weqfê û ji meteryalên vir sûdê verdigrin û lêkolînan dikin.

Divê beriya her tiştî meriv Beşikçi û keda wî nas bike. İsmail Beşikçi di sala 1939 de li İskip'ê tê dinê. Piştî ku di zanîngeha Erziromê de dest bi kar kir û li ser kurdan xebat kir jiyana wî ji binî ve guherî. Ji ber xebatên wî yên li ser kurdan ji zanîngehê hat avêtin û jiyaneke wî ya bi girtîgehan destpêkir. Cara pêşî di 1971'an de ket girtîgehê û 3 sal şûn de derket. Bi tevahî 8 caran ket zindanê û 17 salê wî di zindanê de derbas bû. Zindan ji bo wî bu cîhê zanînê û piraniya xebatên xwe li van deran kir. Bi tevahî 42 berhem afirandin û bi dehan pirtûk jî li ser wî li ser xebatên wî hatin kirin. Di demên herî zor de Beşikçi di milê kurdan de ji mafê kurdan têkoşî, ji ber wê yekê jî di dilê kurda de cîhekî bê hempa girtî ye. Beşikçi bi rûkeniya xwe ya her dem mamostetiya rastgotinê dike.

**Kurd jî bi wefa ne**

Piştî ku Beşikçi li ser kurdan nivîsan dinivîse bi derdorên kurdan re dibe nas, ligel hev danûstandinê dikin. Di dema xwe de Beşikçi ji kovarên kurdan û yên li ser kurdan re nivîsan dişîne. Piştî avakirina Navenda Çanda Mezopotamya'yê bang li wî jî dikin û ew jî diçe. Dû re di avakirina Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê de cîh digre û dikeve nav komîsyonê. Li gor agahiyên ku Serokê Weqfa İsmail Beşikçi İibrahim Gürbüz dan me Beşikçi di avakirina Weqfa Çanda Kurdî û Weqfa Şêx Seîd de jî cîh digre lê ew herdû weqif jî tescîl nabin. Di van çûn hatinan de fikrên xwe ji der û dora xwe re dibêje.

Gürbüz derbarê guftogoyên fikrên Beşikçi de wiha axivî, "Car caran em diciviyan ji min re dogot; İbrahim di destê min de gelek pirtûk hene, ez dixwazim vana bixim xizmeta kurdan. Ew pirtûk di 40 salan de nivîsîbûn. Di 94'an de ev gotin j imin re digot. Wê demê rewş pir xirab bû, rojek bê mirin tunebû. Pêşî min got em bibin Avrûpa'yê, pirtûkxaneyeke netewî ava bikin. Me bi hin kesan re têkilî danî lê dû re li ser qewlê xwe nesekinîn. Di 94'an de Mamoste hat girtin, ez jî ji ber hin dosyayan firar bûm."

Beşikçi fikrên xwe yên avakirina pirtûkxaneyekê her dem ji der û dora xwe re dibêje lê ji ber siyaseta wê demê û zilm û zordariya li ser kurdan û tiştê di derbarê kurdan de ev xwasteka wî nayê cîh. Gürbüz dibê ku: "Keda Beşikçi li ser kurdan gelek hebû, ku kesî nikaribû navê kurd û Kurdistanê bi lêv bikira, wî emrê xwe da. Me jî xwest nîşan bidin ku kurd jî wefadar in.

Me digot li ser navê Beşikçi gere em tiştekî bikin, bo kes nebêje wî emrê xwe daye kurdan, wan jî ji bo wî tiştek nekirine."

**Avakirina weqfê**

Bi hewldanên Beşikçi, Gürbüz û derdora wî biryara avakirina pirtûkxaneyekê tê dayîn. Biryara di bin banê weqfekê de avakirina pirtûkxaneyekê tê dayîn û dest bi xebatên cîh dîtinê tê dikin. Beşikçi ji ber ku li Enqere dijî dixwaze ku weqf li wir be lê ji ber ku li Enqere cîh dîtin zehmet e nikarin li wir vekin. Hin kes dibên li Amedê vekin lê di dawiyê de biryara vekirina li Stenbolê tê girtin. Gürbüz du qatên avahiya xwe ya li kuçeya Ayhan Işık bexşê weqfê dike û sê qatê ser jî ji bo karê weqfê terxan dike. Beşikçi jî xaniyê xwe yê li Enqere û dîsa xaniyê xwe yê li İskip'ê difroşe, hemû koleksiyonên xwe û nivîsên xwe jî dibexşîne weqfê. Di ber van re jî hemû mafê telîfê yên birtûkên xwe jî dide weqfê. Gürbüz wan rojan wiha rewa dike, "Me komîsyonek ava kir û me dixwest teng be. İshak Tepe, Abdullah Baran, Talat İnanç, Beşikçi û ez me weqf ava kir. Di mijdarê de dadgehê tescîl kir, lê me hema îlan nekir. Ji ber ku heftê rêbendanê rojbûna Beşikçi bû, me di we rojê de îlan kir. Ev du sal û nîv e ku em xebatê xwe didomînin."

**Xebatên ku hatine kirin**

Piştî avakirina weqfê hemû pirtûkên Beşikçi li pirtûkxaneyê têne komkirin; katalog, barkot û arşîv dokumantasyona wan tê çêkirin. Di serî de tenê pirtûkên Beşikçi cîh digrin lê paşê ji derve jî pirtûk têne qebûlkirin. Niha di pirtûkxaneya weqfê de 200 hezar pirtûk û 3000 cîlt kovar hene. Di terasa weqfê de ku wek salonekê hatiye dîzaynkirin her hefte civînên cihêreng têne kirin.

Gürbüz di derbarê ji nû ve çapkirina pirtûkên Beşikçi de got ku, "Heya niha me 25 pirtûkên Beşikçi çapkirine û armanca me ev e ku em 42 pirtûkên wî çap bikin û bawerim di nava salekê de ev dê bi cî bê. Bêyî pirtûkên Beşikçi me du pirtûkên din jî çap kirin. Em her sal Konferansa Xebatên Kurdî dikin, par li Zanîngeha Bilgi'yê bû, îsal li jî li zanîngeha Boğaziç bû. Em van konferansan dikin pirtûk, ya pêşî hat weşandin û ya dudiyan jî tê amadekirin. Wan pirtûkan em bi xwe di weşanxaneya xwe de çap dikin."

Li ser înternetê bi navê Jiyan TV weşana weqfê heye. Radyoya Jiyan ku di 2004'an de ahtibû avakirin û bi 11 zimana weşana xwe dikir, di bin bana weqfê de xebatên xwe didomîne. Jiyan radyo niha li ser înternetê weşana xwe ya 24 seatan didomîne. Di weqfê de dersên zimanê kurdî bi dimilkî û kurmancî têne dayîn û eleqeyeke mezin ji bo van qûrsan heye. Weqf di heman demê de piştgiriya pirojeyên cûr bi cûr dike. Herî dawî projeya dîroka devkî ya li ser qirkirina ermenan bi dawî hatî ye.

Gürbüz got ku bo danasîna waqfê li Avrûpa, Kurdsistan û Tirkiye civîna li dar dixin. Gürbüz derbarê xebatên xwe yên di pêşerojê de jî ev agahî dan: Em dixwazin li Amedê şaxekê vekin. Arşîv û dokumantasyona wê tê kirin. Em dixwazin ku bingeha wê bi qewet bibe. Me li wir xaniyek kirî. Hin karsazan alîkarî dan me. Li Hewlêrê jî karsazekî xaniyek da me. Emê li wir jî nûneriyekê vekin. Bawerim di demeke kin de ev der dê vebin.



## Armanca weqfê

Gürbüz derbarê armancên avakirina weqfê de jî ev agahî dan me: Me dixwest nav û fikr û ramanên Beşikçi bidin jiyandin. Li ser dîrok, antropoloji û zanistê xebatan bikin. Me xwest ku zanîna dîrokî, netewî ava bikin. Em ji hemû partiyên kurdan re di mesafeyek wekhev de ne û ji xwe xebatên me siyasî nin in. Karê me li ser zanist, çand, wêje û hwd. e. Gürbüz di berdewamiya axaftina xwe de got ku Beşikçi zanîngehek netewî ye û wiha dirêjî da axaftina xwe: Me tev bi hev re Beşikçi ji mal girt; fikr, raman û xebatên wî kir sazgeh, geş kir û bû navnetewî. Beşikçi berê di mala xwe de dinivîsand û dişand ji malperên kurdan re lê niha bû sazgeh. Ya girîng jî ew e ku dema Beşikçi hê di jiyanê de bû me ev sazî ava kir. Ji bo kurdan jî deskeftinek baş e. Beşikçi dibistanek netewî ye bi hezaran xortên kurd tên fikran ji vir digrin ev destkeftiyan ji bo me cîhê kêfxweşiyê ye.

# Xwendin tune ye, axaftin jî jiber û ajîtasyon e

Dosya ku me mijara wê wek 'Wêşangeriya Kurdî' diyarkir û da destpêkirin bi duyemîn bêşa xwe û vê carê bi wêşanxaneya J&J berdewam e. Di bêşa ewil de li ser pirsgirêkên ku wêşanxaneyên kurdi pê re mijûl dibin û astengiyên li ber wan me bi berfirehî vegotibûn. Vê carê ne hewce ye bê dubarekerin û emê raste rast berê xwe bidin Xwdî û Edîtorê Wêşanên J&J Azad Zal.

***Di derbarê wêşanxaneyê de hun dikarin me agahdar bikin? Kêngê hat avakirin, li ku wêşanê dike, heya niha çend kitêb çap bûne?***

Di 22 Avrêla 2011an de di 113mîn salvegera weşana "Rojnameya Kurdistan" Weşanên J&J ava bû. Mebesta yekemîn a avakirina J&Jyê ew bû ku dest bi weşana "Ensîklopediya Kurdî" bike. Me bi wî awayî fasîkulek amade kir û çap kir. Ji ber derfetên madî xebata ensîklopediyê dimeşe, lê çapkirin rawestiyaye... Di heman salê de wekî weşanên J&J dîsa me tiştek nebûyî kir û me "Ferhenga Somerî-Kurdî û Kurdî-Somerî" weşand. Weşanên J&J heta sala 2013an berhemên taybet, ferheng, lêkolîn, zargotin û yd. çap dikir. Di sala 2013an de J&J xwe ji roman, helbest, çîrok, hêçan û yd. re vekir û dest bi weşana wan jî kir. Heta niha 58 pirtûk ji weşanên J&J derketine. Heta niha 14 roman, 9 çîrok, 15 helbest, 7 zargotin-berhevkarî-wêjeya gelêrî, 6 Lêkolîn, 3 ferheng, 2 hêçan/cerebe, 1 jî aforizma ji Weşanên J&Jyê derketine. Berê ku hûn bipirsin ez bibêjim; "Wateya J&J çi ye û tê çi wateyê?" ez beriya pirsê bersiv bidim. Ji ber ku gelek xwînerên berhemên me û yên ku dixwazin J&Jyê bişopînin vê pirsê dipirsin. "J&J" ango "J û J" wateya xwe ya taybet ev e ku, "jêderk û çavkanî" ye.

Rewşa Wêşangeriya Kurdî 2
Rawîn Stêrk

***Wêşangeriya kurdî, tevî ku hêjmara wêşanxaneyan zêdetir bûye û hin derfet ji berê baştir in niha di çi halî de ye?***






Weşangeriya Kurdî di mercên îroyîn de diviya ku ji her gavî zêdetir baş bûya. Ji ber ku hem ji aliyê teknîkî ve û hem jî ji aliyê derfetên xwendin û nivisandin û pêşketina civakê ve baş e. Lê weşanger(ên)iya Kurdî diviya di van mercên pêşketî de zûtir bigihîşta asta weşangeriya profesyonel û standardên weşangeriya navnetewî. Lê weşangeriya Kurdî di vir de kêm û dereng ma. Sebebên vê kêmbûyîn û derengmayînê mirov dikare wiha vebêje: Weşangerên Kurdî xwedî perspektîfeke berfireh û netewîtiyê nebûn/Weşangerên Kurdî bingeha xwe ji hîzbçîtiyê digirte û ev hê jî derbas nekiriye/ Weşangerên Kurdî bi profesyonelî karê weşangeriyê nakin.

• Weşangerên Kurdî hê ahenga navbera rewşenbîrî û bazirganiyê ava nekirine, ya bi giştî bazirganiyê dikin û rewşenbîrî dikeve xala taliya talî, ya jî rê û rêbazên bazirganiyê di qada weşangeriyê de baş bi kar naynin û di demek kin de têk diçin.

• Sebebekî din ê herî girîng jî pêşketina teknolojiyê weşangeriya klasîk lawaz xist û ji ber wê jî weşangerên kurdî li gorî teknolojiyê rê û rêbazên weşangeriyê bi kar naynin. Mesela e-pirtûk derketine, lê e-pirtûkên kurdî hema bibêje qet tune ne. Di rastiya xwe de ji ber ku Kurdî baş neketiye ser qada teknolojiyê xwendin û şopandina kurdî jî lawaz e.

***Xwendina pirtûkên kurdî li çi astê ye? Firotina pirtûkan têrî xwe fînansebûna wêşanxaneyan dike an na?***

Du sedemên ve yekê hene. 1- Mixabin hê jî pere û qezenca madî di Kurdî de tune ye. Ango Kurdî pere nake. Kesên ku Kurdî baş bizanibin, Kurdî baş û xweş binivîsin, kesên ku wergera Kurdî baş bikin tu qîmet nabînin. Rûmeta kurdî bi temamî nebûye rûmeta netewî û gelerî. 2- Sebebekî din jî ev e ku, weşangerên kurd, nivîskarên kurd bi rastî jî li gorî rewşa kurd û Kurdistanê berheman nanivîsin. Nivîskar ya texlîta niviskariya rojava dike, ya jî li gorî dilê xwe dinivîse û qet Kurd û rewşa kurdan nade ber çavan. Dibêje bila pirtûka min derê çawa dibe bila bibe... Her wisa weşanger jî bi profesyonelî li ser berhemê nasekine, edîtorya û redaksiyon û rûpelsaziyeke baş nake ku ji bo xwendevanan balkêş be. Ango kalîteya pirtûkên kurdî negihîştiye asteke baştir. Evana xwendina berhemên Kurdî lawaz dikin, an jî xwe nadin xwendin. Firotina pirtûkan jî qet nebaş e. Her berhemekê em hezar çap dikin. Nabe ku mirov 100 yan jî 200 pirtûk wekî protokol bide. Lê di nava me kurdan de dibe.

***Di warê belavkirin û bazarê de pirsgirêkên ku wêşanxaneyên kurdî rû bi rû ne hene an çi ne?***

Bazara Kurdî tune ye, pirtûkfiroşên Kurdî hema bibêje tune ne, gelek kêm in. Ji ber ku li pirtûkfiroşan zêde berhemên Kurdî li pêş nîn in, balê jî nakişîne. Lê yê herî girîng pergaleke dirust di navbera weşanger û pirtûkfiroşan de ava nebûye. Ya pirtûk bi dirustî nagîjin pirtûkfiroşan, ku bigihîjê jî û bê firotan jî perê pirtûkan ya venagere, ya jî bi salan şûn de vedigere. Ango di qada bazarê de pirtûkên kurdî di bin piyan de dieciqin.

***Xwînêrên kurd zêdetir çi dixwînin? (Wêje, felsefe, dîrok, civaknasî, psîkolojî hwd.)***

Ez dikarim vê pirsê li ser îstatîstîkên berhemên J&Jyê bibersivînim. Roman zêdetir tê xwendin, piştî wî çîrok û şûn de berhemên zargotinê, dest û çîrçîrok û pêkenokên gelêrî têne xwendin. Helbest hindik tê xwendin. Mixabin qedera helbesta kurdî digel helbestkar reş e. Ev çawa ew ê çareser bibe ez nizanim. Ferhengê me hindik in, lê ferheng ji me têne xwestin, lêkolîn û hêçan xwedî xwendevanên taybet in.

***Sazî û partiyên kurdan, şaredarî û dezgehên din û nêzikahiya wan a li hemberî wêşangeriya kurdî çawa ye?***

Ez tenê vî tiştî bibêjim, sûcdarê lawaziya weşangeriya kurdî yên herî mezin ev in. Ji ber ku peywira xwe naynin cî. Ne ku ez dibêjim bila alîkarî bikin, bila ji bo alîkariyê berhemên kurdî nestînin, bila ji bo alîkariyê ji bo trîbûnê nelîzin. Eger ku bi rastî bixwazin alîkariyê bikin, bila salê carek yan jî ducaran (şaredarî) hemû berhemên kurdî yên ku derketine bi awayeke bi pergal bistînin. Ji bo dibistan û pirtûkxaneyên taxan. Partî û desgehên din jixwe malxirabî ye. Xwendin tune ye, kes naxwînin, ji ber ku xwendin tune ye, axaftin jî tenê ezber û ajîtasyon e.

***Li gor we astengiya sereke ya li ber wêşangeriya kurdî çi ye?***

Siyaseta Kurdan hê negihîştiye asta qîmetdayîna weşangeriya Kurdî. Sosyalîteya Kurdan hê negihîştiye asta qîmetdayîna pirtûkên Kurdî. Astengiyên herî mezin ev in.

***Û pêşniyarên we çi ne?***

Pêşniyaza min a sereke ev e; bila tu rayedarekî, siyasetmedarekî, şaredarekî an jî esnafekî ji bo alîkariyê bila berhemên Kurdî nestînin. Eger ku bixwînin bila bistînin.



# "Dîk û Mirîşken Rêbera Rastnivîsê"

O. F. Baran

Dibên li welatê ku kul û kerb û derb bi hev re bi ro û roj û şev lê ne, him gramer him sîngên spî wek mermer him jî rêziman û rêlêvûdiran tiştên ecêb ên mîna însanan, car caran jî hevokên ku dişibin reşmarên bi qasî ku kes bawer nake dirêj û dîsa kes jê fehm nake çi mesele ye dibînin, çi mesele ye? Kitêb çap dibin, peyv li hev dikevin, nivîskar ji hevdu dixeyîdin, radibin rûdinin tirbên hev dikolin lê ne tiştek, dîk û mirîşk, tiştek, ne bi qasî ap û biraziyan, ne jî bi qasî şûr û mertalên bêmane li deşt û zozanên êqil çavan li xwendevanan sor î pij dikin tamarên serê xwendevanan nêşînin. De, dîsa de, de tamarên serê xwendevanan li dera han, hevok şaş dibe reş dibe yan xweş dibe ne xema serê derziyê ye jî. Kî çi zane nêta kê çi ye û kî çi dibêje, qetekî qetqetî ye.

Min û wî û wê me tev got me gotiye de, ji pê ve Rêbera Rastnivîsînê ya ku Mistefa Aydogan hazirkirî ye. Tirs ev e ku di vê nivîsê de sê car û nîvan bi qasî emrê nivîskêr şaşnivîsîn hebin, çewt î çeloxwarkî, dûr û nêzîk, jihevketî, di bin û ser re jî lihevketî. Kitêb sala 2012an bi bi arîkariya Independent Kurdish Media Gorupê ji Weşanxaneya Rûpelê derketiye û li gor rast û derewên çend kitêbfiroşên li Diyarbekirê li dû şopa nanê xwe ketine kitêb hê nû îsal gihiştiye Amedê û dîsa û seba xatirê nivîskarekî ku hez dike li ser zimanê xwe biwêjên tirkî bireqisîne jî li welêt "na difroşe"

Tê gotin ku ji ber ku kitêb rêber e û mê ye bala gelek xwendekar û mamosteyan dikşîne. Bes dîk û mirîşkên di kitêbê de kiriye ku hinekên ku li ser kurmancî sond dixwin û wextekê dost bûn piştî demekê bibin dijminên hevdu. Ecêbeke giran ecêb e ku di rûpela 83yem a kitêbê de di nav nimûneyên peyvên dunavdêrî yên ji bêjeyên dijmaneyên hevûdin in ji bilî "dost û dijmin", "ken û girî", "kêm û zêde" û "çûn û hatin"an "dîk û mirîşk" jî heye.

RÊBERA RASTNIVÎSÎNÊ
Mistefa Aydogan
RÛPEL

Herçiqas hin kesên ku dîk û mirîşkan wek bêjeyên dijmane dipejirînin hene jî piraniya xwendevanan li dijî kitêb û vê yekê derdikevin. Edîtorê Weşanxaneya Pûçpûço li ser meseleya dîk û mirîşkan wiha dibê: "Ez Mistefa Aydogan baş nas dikim, jîr û jêhatî ye, dikare şeytên tî bibe Ferêt û bîne. Yanî ne ku ji nezaniya xwe dîk û mirîşk kirine dijwate, ji zanebûnê wer kiriye ku kitêb sansasyonel be û zêde were firotan. Lê tiştên bi vî rengî li kirrîn-firotina kurmancî kar nakin. Ez bi tundî û tewangî cenabê wî şermezar dikim."

Akademîsyenê ku xwe dîtiye nedîtiye li ser zimên dişixule û naxwaze navê xwe û navê zanîngeha xwe bide jî li ser meseleyê wiha dibê: "Dîk û mirîşk? Çawa yanî? Bêjin ANF û Rûdaw, ez ê bêjim rast e dijwate ne ez ê qebûl bikim lê dilê min nahêle ku ez vê neheqiyê li dîk û mirîşkan bikim. Şaşitiyek, çewtiyek heye, di kitêba ku mohra zimanzanên mezin ên mîna Newzad Hirorî, Remzî Kerîm, Reşo Zîlan, Zana Farqînî heye de tiştekî wilo qet nayê qebûl kirin, zilm e."

Heta niha deng ne ji dîk û mirîşkan ne jî ji Mistefa Aydogan û Weşanxaneya Rûpelê derketiye û hê pir berî deng ji wan derkeve dîk-hêk-mirîşk, him hemwate him dijwate, hê jî kes nizane kîjan ji kîjanê derketiye.

# Derhêner Nûrî Bîlge Ceylan rêwiyê Oscarê ye

Di 87emîn Xelatên Akademiya Oscarê de Nûrî Bîlge Ceylanê ku di 67emîn Festîvala Fîlman a Cannesê de xelata "Palmiyeya Zêrîn" wergirt dê Tirkiye bi fîlma xwe ya "Xewa Zivistanê" temsîl bike.

Wezîrê Çand û Tûrîzmê Omer Çelîk destnîşan kir ku fîlma Nûrî Bîlge Ceylan a bi navê "Xewa Zivistanê", li 87. Xelatên Akademiya Oscarê de dê Tirkiye temsîl bike.




Wezîr Çelîk di daxuyaniya xwe ya li ser Twitterê de bi bîr xist ku fîlma Ceylan a "Xewa Zivistanê" di 67emîn Festîvala Fîlman a Cannesê de xelata "Palmiyeya Zêrîn" wergirt.

Çelîk diyar kir ku "Xewa Zivistanê" a niha jî rêwiyê Oscarê ye û ji ber vî Çelîk, Ceylan pîroz kir.

Wezîr Çelîk bi berdewamî wiha got: "Ez hêvî dikim ku Nûrî Bîlge Ceylanê ku di qada navneteweyî de heta niha gelek serkeftin bi dest xistiye, dê heman serkeftinê di Oscarê de jî bi dest bixe û her wiha ez ji cenabê wî re serkeftinê dixwazim."

# Aram Tîgran tê bibîranîn

Hunermend Aram Tîgran ê ku bi stranên xwe di dilê gelê kurd de cih girtiye dê di 5'emîn salvegera wefate xwe de li Amedê bi berhemên xwe bê bibîranîn.

Aram Tîgran ê ku wekî bilbilê Rojhilata Navîn tê bîranîn û di dilê gelê kurd de cih girtiye dê di 5'emîn salvegera wefata xwe de bê bibîranîn. Ji bo Tîgran dê di 9'ê Tebaxê li Amedê şeve bîranînê bê lidarxistin. Di bîranînê ku ji aliyê Navenda Çandê ya Dîcle-Firatê ve tê organîzekirin de dê stranên Tîgran bê stran. Merasîma bîranînê dê li Şanoya Amfî ya Qada Jiyana Hevpar a Sumerparkê saet di 20.00'an de dest pê bike.




www.arsivakurd.org

## Brahîm Şêxo:

# Hunermendê bê xewn

Dersîm Oremar

Di muzîka Kurdî de gelek malbatên hunermend hene ku bi awayê komî karê hunerî dikin û huner û muzîk êdî bûye beşek ji jiyan û nasnameya malbata wan. Bêwelatî û derbederiya Kurdan bandor li ser hemû aliyên jiyan wan hebûye û tevî ku malbata Şêxo bi awayê komî karê hunerî nakin, lê her yek ji wan di ware muzîkê de dixebitin û navê Kurd û Kurdistanê kirine cîhanî. Malbata ku di dîroka muzîka Kurdî de jî navekî naskirî ne.

Herî dawî berhema Brahîm Şêxo ya bi navê "Dilopên Siyekî" derket, min jê xwest derbarê berhema xwe hin zanyariyan bide xwendevanên me û ev yek bû hêwêna hevpeyvîna me.



***Navê albûmê beşek ji nasnameya berhemê ye, çima Dilopên Siyekê?***

Dilopên Siyekê him navê berhemekê di albûmê de, him jî navê albûmê bixwe ye. Gava min dît navê Dilopên Sîyekê çawa li berhemê tê, wê li albûmê jî were, min got çima na? Bila wilo be, çêtir e ku ez rabim û dîsan li navekî nuh bigerim.

Dixwazim hinek behsa naveroka albûmê û alemanên ku di berhemê de bikar hatine bikî.

Albûm ji 9 berheman pêk tê. Berhemek din jî hebû (solo gîtar) lê min tevliyê nekir, ji ber sedemine teknîkî, kişandina deng. Lê a giring ne ew e, ka balo berhem di CD de ye an na, belê di wir de ye, ku li ser kaxez hatibe notekirin. Bi vê yekê berhem winda nabe, û mere dikare tişta ku li vir nehatibe tomarkirin, bi albûma bê re belav bike. Berhema: Ne ew bû ... ne ew bû ... 2010 yan 2011. Di destpêkê de min jibo piyano nivîsand, dûv re bi çend salan min transkrîpe kir jibo orkêstra kemana. Dilopên Sîyekê: di salên 2006-2007 ji piyanîst Shin Heae Kang re nivîsand. Shin Heae jî ji alî xwe de plan kiribû ku vî berhemî di imtîhana xwe ya qedandina xwendina xwe de bijene.

Me carekê hev dît û baş axivîn, dûv re min nas kir ku çûye Brazîlê, li wir dersan dide, dersên piyano. Bedaxewa nebû nesîb ku Shin Heae vî berhemî di CD de bijene, dîsan jî ne pirsgirêk e, ji ber heger ne ew be, belê hemnetewa wê (Korêya Başûr) Bongju Lee, ev berhem jenî. Rê: Jibo instîtûya ku ez lê dixwînim, min nivîsand. Jibo solo-keman û orkêstra ye. Ji me xwendekarên beşê komposîsyonê hate xwestin herkê ji me tiştekî binîvisîne, dem jî kin bû. Min Rê danî. Danse du phrygien: jibo 5 amûrên pifdanê ye (flût, sopran saksofon, klarînêt B, fagot, horn). Nav fransî ye, jiber wilo lê tê. Nema: pêşî min ji piyano re danî 2007 dûv re bi çend salan min grûpa kemana jî pê vekir. Second Part: solo piyano ye. 2010-2011 Love: Jibo têatroyekê hatiye danîn. Ev têatro li instîtûya ku ez lê dixwînim a muzîkê, hate pêşkêşkirin. Muzîka min lêket bêy ku dema min hebe bikarîbim lê hazir bibim. Gotinê stranê jî min bixwe danîne, bi ingilîzî ye (li gor xwesteka xwediyê şanoyê), dibêje: Evîn, her tişta ku em pê hest dibin e... Evîn ji wî hestî dûrtir e jî ... Her tişt di evînê de ye ...

***Mirov dikare bêje, Dilopên Siyekê ji berhemên din cudaye? Ev xalên cudaker çi ne?***

Ev muzîk ton-serbest e, û muzîkê din girêdayî tonalîteyê ne.

***Gelo tu nafikirî ku berhem li Kurdistanê jî çap bibe yan konsertan pêşkêş bikî?***

Ma kê naxwaze? Li ser mesela weşandin û mafê weşandinê, nizanim ka li Kurdistanê çawaye. Lê ez texmîn dikim ku li wêrê gavinê erênî diavêjin. Min albûma xwe li vêrê da çapê, ji ber berî her tiştî ez li vir dijîm û têkilya min bi vir re dîrêkt e. Li ser mesela dana konsêrtan, dibînim ku hinekî zehmet e ji ber mesela çûn û hatina rê. Jibo çapkirina kaxezî, ti pirsgirêk li Kurdistanê tune. Ez texmîn dikim çapkirina noteyan wê mîna çapkirina tişta ku em li ser Kurdistanê derbarê çapemenî û weşanê dizanin, bê pirs û sînor be. Ezê binerim heger vala bûm, belkî noteyên xwe verêkim bo wir. - Ji xeynî albûma te çend berhemên te weke pirtûk jî hene, dikarî hinek behsa wan jî bikî? 2009 min pirtûkek piçûk ku ji stranê zarokan pêk tê, da çapê û belav kir. Weşanxaneya Xanî-Elmaniya. Wekî din jî car û car gotarine ji elmanî bo kurdî û verêkirina wan bo Kurdistanê. Bi 10ê nivîsên di wîkîpedya de li ser muzîkê. Bi rastî karê deranîna pirtûkan nisbet min ne ewqasî zehmet e, ber wilo min jî ji xwe re nekiriye derd û armanc. Heger çapxaneyek li mala min hebe, dê rojane bi 10'ê stranan bidim çapê û bikim pirtûkek.

***Hûn malbateke hunermendin û tu bi xwe jî di wî warî de kesekî akademîkî, lê rexneyek ji te heye ku berhemên te kêmin, sedem çiye yan bersiva te ji bo wê rexneyê çi ye?***

**1-** Li cem min ne tenê bi pirbûna berheman e, lê belê bi naverok û kalîteya wan.

**2-** Rewşa aborî. Min li gor buxçika xwe, ew jî perê xwendinê bûn ku apê min Beha dabûn min, spasiya wî dikim, wan berheman da bi tomarkirinê. Divê ez ji bîr nekim ku xwediyê stodyo jî kêm-zêde mîna wî mîna gelek şagirtên di CD de kar kirin, alîkariya min kir. Berî her tiştî ji hezkirinekê, a didwan nedixwestin ku ev talênt bêxwedî bimîne. Ez spasiya wa tevan dikim.

**3-** Peydakirina muzîkvanan li gor mercê min niha qal kirî, ê aborî, pir zehmet e.

***Xewna te di warê hunerî de çi ne?***

Xewnê min tunene. Ez dijîm û ji jiyanê hez dikim û tişta li gor xwe bikarîbim pêkwerînim, dê bikim.



## Brahîm Şêxo Kî ye?

kurê hunermendê nemir Mihemed Şêxo ye. Di sala 1981 ê de li penaberiyê, bajarê Gunbadê Kawûs li Îranê jidayik dibe. Di sala 1983an de vedigerin Qamişloyê û li wir mezin dibe. Hîna di temenê zaroktî de dest bi muzîkê dike. Di malê de û li gorî amûrên ku li wir peyda dibine, fêrî jenînê dibe, berî her tiştî jenîna Biziqê. Û berî her tiştî jî bi piştevaniya apê wî Beha jê re, ku jê re hîna gava piçûk bû bizqekê kirrî û guh li talênta wî dike. Di ber re Brahîm karê resim û kalêgrafiyê jî dikir, li cem van hunermendan: Bengîn Xelîl, Seîd Rêzanî, Mistefa Heccî. Di salên 2000 de li cem Dr. M. Ezîz Zaza, li instîtûya wî ya muzîkê li Qamişloyê muzîkê dixwîne.

Di sala 2004 ê de tête Elmanyayê. Li vira jî karê xwe yê muzîkê berdewam dike. Brahîm dersên muzîkê dide zarok û mezinan û grûpeke ji zarokan dadimezrîne. Brahîm Şêxo li gel van karana li bajarê Kiel/ Elmaniya biryara xwendinê dide (Yan muzîk yan Psychology). Li zankoya CAU yê beşdarî dersên Muzîkolociyê dibe. Piştî hingî li bajarê Detmoldê di zankoyê de "Hochschule für Musik-Detmold" dibe şagirtekî têkildar, piştî vêya jî li bajarê Osnebrück ê xwendina xwe berdewam dike (Classical Composition).

www.arsivakurd.org